

پەناخوازانی
کورد لە بە هەشت
بێزارن

6◀



گەلاویژ واز
لە هەڵپەرکێ
دێنێت

16◀

دوو مانگە
سلێمانی بە
(دارستان و یاساکەی)
پێدەکەنێ

9◀




# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA




Deutschland, Österreich, Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Danmark 15,00 DKK

Hejmar/Nr. 21 | 24. Mijdar/November 2009 | www.rudaw.net








## Ji Parîsê Hêro û Celal Talabanî derbasbûn



*(Wêne: Kristof Petit Tison)*

Serokkomarê Iraqê Celal Talabani hefta borî tevî hevjîna xwe Hêro bû mêvanê Serokkomarê Fransa Sarkozy û hevjîna wî Carla Bruni. Di merasima pêşwaziyê de samimiyeta Talabani û Sarkozy balê kişand. Herwiha herdû firstlaydên Kurdistan û Fransayê ji bi şikbûna xwe balê kişandin.

### Tirkiye bi kurdkujî û bi derewên dîroka xwe re rûberû dibe

# Mebûsê CHP'ê Öymen Tirkiyeyê û dîroka wê tevlîhev kir!




*Koma "DurDe," Onur Öymen û Devlet Bahçelî wek nijadperestên mehê hilbijart.* *(Wêne: Diha)*

Axaftina tehdidkar a mebûsê Partiya Komarxwaz ya Gel (CHP) Onur Öymen mora xwe li rojeva Tirkiyeyê xist. Öymen di axaftina xwe ya di rûniştina meclisa Tirk ku li ser 'vebûna demokratik' hatibû lidarxistin de hikûmeta AKP'ê bi zimaneki giran rexne kiribû û xwestibû ku pirsgirêka Kurdistanê wek komkujiya dema berxwedana Dersimê û ya Şêx Said bê tefandin. Ev axaftin li Tirkiyeyê li aliyeki ve bû sedema nerazîbûnên tund yê kurdan, li aliyê din ve di nav siyasetmedar û rewşenbîrên tirk de bû sedemê lêpirsîna kiryarên komara tirk li dijî kurdan. Serokwezîr Erdoğan di bersiva Öymen de bû rayedarê yekem ku di dîroka komara tirk de peyva ''komkujiya Dersîmê' bikaranî û kiryarên dewletê yên rabirdû wek 'qetliam' binavkir.

Öymen ku di axaftina xwe de pesnê siyaseta Mistefa Kemal ya dijî kurdan dabû û gotibû, 'Mistefa Kemal Atatürk bi Şêx Said û Seyid Riza re rûnenişt, wan bidardekir' bû sedemê niqaşên li ser Ataturk jî. Piştî van bûyerên dawin êdî li Tirkiyeyê 'piroziya Ataturk' jî tê niqaşkirin û ev niqaş jî niha ve bi eşkerekirina derewên dewleta tirk û rûberûna dîroka komara tirk ve didome.

Cihgirê Serokê CHP'ê Onur Öymen ku di rûniştina meclisa tirk de siyaseta 'vebûna kurd' ya AKP'ê bi girani rexne kir û li aştixwaz û kurdan bi qirqirkirinê tehdîd kir, di raya giştî de bû sedemê destpêka lêpirsîna dîroka dewleta tirk. Axaftin û helwestên dijî Öymen, li Tirkiyeyê atmosfereke nû afirand û di serî de siyaseta dewletê ya dijî kurdan, qetliamên Dêrsim û Serhildana Şêx Seîd bû mijarên niqaşan. Herwiha dengdar û aligirên CHP'ê yên Elewî dest bi istifakirina ji CHP'ê kirin û Dêrsimiyan bi giştî li dijî CHP'ê dest bi çalakiyan kirin. ▶ 6

Mijdar 2009 - Hejmar 1

MONDE diplomatique kurdî

Têkoşîna me

Komkujiya ku li kirdarê xwe digere

**DERKET**

LE MONDE diplomatique kurdî

**LI FIROŞGEHAN**

Avakirina nû ya bingehîn

## Mîr Tehsîn bê deng e



Mîrê Ezdiyan Tehsîn Beg ku demeke berê ji ber sedemên ne diyar pena anî Almanya, di derbarê sedemê derketina xwe ya Kurdistanê de bêdengiya xwe didomine. Tehsin Beg herçend got "deriyê mala min ji Rûdawê re vekiriye" ji di derbarê rewşa xwe ya taybetî û mijara hatina xwe ya ji bo Almanya, naxwaze xeber bide. Tehsin Beg dibêje, "dema ew biçe Kurdistanê, wê her tişt eşkere bike."

Mîr Tehsîn di dawiya cotmehê de hatibû Almanya û doza penabertiyê kiribû û hikûmeta Almanya bersiva erenî dabû wî.

## Su TV bi nûçeyên Rûdawê dest bi kurdî kir

Su TV ku li Tirkiyeyê zêdetir wek kanaleke Alewiyan tê nasin, piştî guherîna yasayê dest bi weşanên kurdî kir. Di bernameya nûçeyan ya Su TV de rojnama Rûdaw wek çavkanî tê bikaranin. Redeksiyona Su TV di daxuyaniyeki de ragehand ku ew di xeberan de nûçeyên rojnama Rûdawê bikartinin. Bernama nûçeyan ya Su TV'yê her êvar katjimêr di 19.30'an de destpêdike.

## Îsmet Şerîf bû 85 salî

Zanist û siyasetmedarê kurd Îsmet Şerif Wanli ket 85 saliya xwe. Salvegera Wanli li Komeleya Çanda Kurd a Lozanê hat pîrozkirin. Wanli sala 1924'an di 21'ê Mijdarê de li Şamê jidayik dibe. Xwendina xwe ya zankoyê li Libnan, li Fransa û li Amerikayê didomine. Di van salan de bi erebî, fransî û ingilîzî fêr dibe. Di 1948'an de li Lozanê zanyariya hiqûqê diqedine. Îsmet Şerif di salên 1970'an de nûnertiya Mele Mistefa Barzanî kir û leqayê êrişa sixurên Saddam bû. Ew di sala 1999'an de demeke dirêj seroktiya KNK'ê kir. Wanli pirtûkên bi navê Die Nationale Frage türkisch-Kurdistan, Kurd û Kurdistan nivisandine. Wanli li Lozanê, bi jineke Swisreyî re zewiciye û kureki wî heye.



Hemû maddeyên maddeyên hişber ku li Pêncwîn û Hac Umran hat girtin, ji Îranê derbasî Herêma Kurdistanê dibe.

# Di 3 salan de 122 bazirganên narkotîkê hatin girtin

*Li Herêma Kurdistanê bûyerên bazirganiya madeyên heşbir bilind bûye û tenê îsal li Silêmanî û Hewlêrê polis gelek bazirganan girtiye. Madeyên heşbir ji Îranê derbasê Kurdistanê dibe û ji wir jî derbasê welatên din dibe. Rayedarên polis dibêjin ku li Herêma Kurdistanê bikaranîna madeyên heşbir kêm e.*

**Rûdaw (Hewlêr)** – Rêveberê Nehiştina Maddeyên Hişber li Asayişê Giştî yê Herêma Kurdistanê ragihand ku di van sê salên borî de 122 kes jiber bikaranîna maddeyên hişbir hatine desteserkirin û jimara herî zêde ya girtiyan ji li qezaya Soran bûye: "Tenê îsal me 18 kes li bajarokê Soran jiber maddeyên hişbir desteserkirine."

Rêveberiya Nehiştina Maddeyên Hişber li Asayişê Giştî yê Herêma Kurdistanê di 26'ê hezîrana 2006'an de ku roja cîhanî ya nehiştina maddeyên hişbir e, hat vekirin. Ji bili destdanîna ser maddeyên hişber û desteserkirina bikarhêner û bazirganên wan, Rêveberiya Nehiştina Maddeyên Hişber li Asayişa Giştî yê Herêma Kurdistanê hewl dide ku sala bê bingeheke çaksaziyê bo çareserkirina bikarhênerên maddeyên hişber veke.

Jiber ku Îran wek cihekî sereke yê berhemanîna maddeyên hişber tê nasîn, hemû maddeyên hişber ji Îranê derbasî Herêma Kurdistanê dibin, nemaze ji aliyê Pêncwîn û Hac Umran.

Lê niha yê xeter bajarê Îraqê bi xwe ne. Rêveberê Nehiştina Maddeyên Hişber li Asayişê Giştî yê Hewlêrê Ferset Dolemerî dîv ê derbara dê vaha li gel Rûdawê axivî. Dolemerî diroka derbaskirina maddeyên hişber bo Başûrê Kurdistanê vedigerîne destpêka salên 90'an: "Maddeyên hişber ji herdû xalên Hac Umran û Başmax tên Kurdistanê, lê niha dergehekî gelekî xetertir bo hatina van maddeyan heye ku ewjî başûrê Îraqê ye nemaze deriyên Bedre, Cesan, Şelamçe, Besra, Feke û Emmare. Van xalan xeterek e zêde li Kurdistanê peyde kirine jiber ewên dixwazin bi transit maddeyên hişber bibin Sûriyê û Tirkiyê berê xwe didin Kurdistanê."

Navbirî da zanîn ku xelk li Kurdistanê bi awayekî kêmtir bazirganiya van maddeyan dikin, lê bi rêya Kurdistanê wan vediguhêzin welatên din: "Bazirganên me kêm bazirganiya van maddeyan dikin, ewên me girtine ji zêdeyî 5 kg nebûye, lê wan tînin da ku bibin welatekî din û peywendiyên wan li gel hinek kesên li dervey Kurdistanê hene."

Navbirî red dike ku hinek berpirsên Kurdistanê bazirganiya maddeyên hişbir dikin û bikar tînin. Di derbarê cureyên maddeyên hişber ên ku derbasî Kurdistanê dibin, Ferset Dolemerî wiha got: "Tiryaq ji hemû maddeyên din bêhtir tê derbaskirin, piştî wê xeşxeş, eroin, morfîn û kristal. Sala borî me çar çeteyên bazirganê maddeyên hişber desteserkirin."

Herkesê ku maddeyên hişber pêre bê girtin li gor Benda 14'an ji yasaya Îraqê tê cezakarin. Dolemerî got: "Yên ku tên destserkirin, bi belge tên desteserkirin û tê dadgehkirin, çi bazirgan be yan jî bikarhêner."

Li gor axaftinên Ferset ji wextê Rêveberê Nehiştina Maddeyên Hişber li Asayişê Giştî yê Herêma Kurdistanê hatiye vekirin heta niha 122 kes jiber bazirganî û bikaranîna maddeyên hişber li Parêzgehên Hewlêr û Dihokê hatine desteserkirin: "Piraniya girtiyan li derveyî Kurdistanê jiyane."

Derbarê giraniya wan maddeyên hişber ên hatine desteserkirin, Dolemerî wiha got: "Îsal li Hewlêr û Silêmaniyê me dest danî ser 4 kîlo û 577 gram tiryak, 25 gram xeşheş, 3 gr kristal û 3 kîlo kokainê."

Navbirî got ku piraniya bikarhênerên maddeyên hişber ji bajarokê Soran in: "Maddeyên hişber bêhtir li navçeya Soran in û îsal li Soran me 18 kes bi sedemê anîn û bikaranîna van maddeyan desteserkirine, li beramberî vêya ji li seranserê Herêma Kurdistanê 122 kes hatina desteserkirin."

Li piraniya welatan nemaze yên ku rêjeya bikarhênerên maddeyên hişber li wan zêde ye, navendên çareseriyê bo bikarhênerên maddeyên hişber tên vekirin û hewldan li gel wan tên kirin heta dev ji bikaranîna van maddeyan berdin. Dolemerî got li Kurdistanê ji hewldaneke bi vî awayî tê kirin û axaftina xwe wiha qedand: "Projeyek di destê me de ye, ku sala bê em bingeheke çaksaziyê bo bikarhênerên maddeyên hişber vekin û çaverêya bersiva aliyên bilind ên hikûmetê dikin."

# Stranbêj ji ber kuştina keçekê tê sêdarekirin

**NECMEDÎN NÊRWEYÎ**



Stranbêj Dindar

**Zaxo (Rûdaw)** - Piştî Nehle Mihemed Nûrî roja 17'ê tebaxa 2009'an ji aliyê keseki Zaxoyî yê ve hat xeniqandin, polis wî girt û dadgeha Duhokê ji biryara sêdaredana wî da.

Nehle Mihemeda ku mamosteyî dikir, jineke 33 salî û rûniştvana bajarê Zaxo bû. Berî kuştinê bi çend rojan li Komisyona Bilind a Hilbijartinê ya Zaxo bûbû fermanber. Nehle roja 17'ê tebayê li gel stranbêjê bi navê Dindar diçe derveyê Zaxo. Piştre ew ji aliyê Dindar ve tê xeniqandin û termê wê li cihek bi navê "Nav Kendala" ya girêdayî Batifan tê avêtin.

Polisên Zaxoyê di heman rojê de termê Nehle dibînin û li Dindar digerin. Dindarê ku ji aliyê polisan ve di heman rojê de tê girtin di destpêkê de kuştina Nehleyêqebûl nake. Lê polis di otomobîla Dindar de lêkolînê didomîne û parçeyek ji neynoka Nehle Mihemed Nûrî têde dibînin. Piştî lêgerînê diyar dibe ku ew neynok ya Nehle ye û ji ber wê jî Dindar neçar dibe ku kuştina wê îtiraf dike.

Jêderek ji dadgehê ji Rûdawê re ragihand ku Dindar di parastina xwe de gotiye ku wî roja 17'ê tebaxê Nehle li gel xwe derxistiye û piştî ku tecawûza wê dike ew dixeniqîne û davêje newalekê.

Herwiha hat ragihandin ku malbata Nehle Mihemed Nûrî ji li dadgehê amadebûye û daxwazkirine ku gûnehbar bê sêdarekirin.

Dadgeha gunehbaran a Duhokê ji li gor yasaya cezayê ya Îraqê biryar da ku Dindarê 25 salî bê sêdarekirin. Dindarê ku cezayê sêdarekirinê wergirt, zewicandiye û bavê 4 zarokan e; Herwiha ew stranbêj e û du klîbên wî hene ku li kanalên kurd de dihatin weşandin.

# Şêwirmendê Talabanî yê tirkmen diz derket



Talabanî û cîgirê xwe Remezan Hacî Reşîd.

**Kerkûk (Rûdaw)** – Şêwirmendê Celal Talabanî yê karûbarên turkmenan li Kerkûkê ji ber tewanbarkirina bi dizîna pereyên karker û xwendekaran ji kar hat dûrxistin. Wekî din şêwirmend tê tewanbarkirin ku bi wan pereyan hevkariya partiyeke turkmenan ya dijkurd kiriye.

Nûnerê Serokkomarê Îraqê Celal Talabanî bo karûbarên turkmenan li Kerkûkê Remezan Hacî Reşîd ev nûçe bo Rûdawê piştrast kir û ragihand ku şêwirmendê Talabanî bo karûbarên turkmenan Îhsan Beg, ji ber diziya pereyên ji kar hatiye avêtin û got: "Mehane butçeyeke taybet ji aliyê Serokkomarê Îraqê Mam Celal ji bo ofîsa Îhsan Beg dihat terxankirin, di nav de meaşê 14 fermandaran ji heye ku mehane nêzîka 1000 Dolar e, lê van fermandaran meaşên xwe wernegirtine û Îhsan Beg pereyên wan xwarine."

Derbarê xwarina pereyên 387 xwendekarên ku li ser hisabê Celal Talabanî bo xwendina li Tirkiye û Azerbaycanê hatine şandin, Remezan Hacî Reşîd dibêje: "Mehane nêzîka 38.700 Dolar ji butçeya Mam Celal ji bo xwendina 387 xwendekarên turkmenên Kerkûkê dihat şandin. Lê meaşê hinekan ji wan negihiştiye destê wan û kurê Îhsan Beg ji dêlva wan îmze kiriye û pere wergirtine, lewma beşek ji pereyên xwendekaran diyar nîne."

Ji bili ku Îhsan Beg bi xwarina pereyan hatiye gunehbarkirin, di heman demê de ji tê gunehbarkirin ku bi van pereyan hevkariya partiyeke turkmen kiriye, ku li Kerkûkê dijayetiya kurdan dike. Di vê derbarê de Remezan Hacî Reşîd got: "Kurê Îhsan Beg şêwirmendê Bizava Turkmen ya Îraqê ye û bavê wî jî hevkariya wan dikir, li gel ku Bizava Turkmenî nêzîkî Malikî ye û li gel hinek erebên Hewîce kar kiriye. Niha bi biryara Mam Celal ofîsa Îhsan Begê hat girtin û ew jî ji kar hat avêtin."

Rûdawê xwest peywendiyê li gel Îhsan Beg deynê, lê navborî ne amade bû daxuyaniyan bide û tenê wiha got: "Ev tewanbar hemû ne rast in."

Rûdaw

**Xwedî:** Rudaw Media GmbH · **Serokê Civata Birêvebir:** Nûredîn Weysî · nuradinwaisi@rudaw.net
**Sernûser:** Ako Mihemed · akopress74@yahoo.com · **Rêvebirê Beşa Kurmancî:** Faysal Dağlı · faysaldagli@rudaw.de
**Rêvebirê Beşa Soranî:** Hêmin Ebdulla · hemen@rudaw.nl · **Navnîşan:** Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a · 50823Köln/ Almanya **Telefon:** +49 (0) 221.26 00 40 02 · **Telefax:** +49 (0) 221.26 00 49 81
**Web:** www.rudaw.net · **E-mail:** info@rudaw.de (Beşa Kurmancî) · **E-mail:** rudaw@rudaw.net (Beşa Soranî)



*"Eger desthilatdarên kurd bixwazin nîşanî xelkê bidin ku êşandina êzdî û şebekan ne siyaset e, divê lêpirsînê li gel berpirsên asayîşê bikin"*



*Zarokên êzdî bi kincên xwe yên taybet li Lalişê di merasimeke olî de* (Wêne: Rûdaw)

## Rêvebirê Human Rights Watch Joe Stork:
# Rapora me ne li dijî kurdan bû

**HAWAR EDVÎLREZAQ**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Cîgirê Rêvebirê Beşê Rojhilata Navîn li Rêxistina Human Rights Watch Joe Stork ragihand ku rayedarên Herêma Kurdistanê soz dane wan ku giliyên di rapora dawî ya rêxistina wan de lêbikolin û got: "Em kêfxweş in ku berpirsên kurd amade bûn me bibînin, tevî ku wan zêde bi zelalî daxuyandibûn ku rapora me ne bi dilê wan e jî."

Rêxistina Human Rights Watch - HRW di rapora xwe ya dawî de ku roja 10'ê mijdara 2009'an hatibû belavkirin, rexneyên tund li Hikûmeta Îraq û Hikûmeta Herêma Kurdistanê girt ku di şerê wan ê li ser navçeyên cihê nakokiyê, mafên kêmneteweyên wek êzdî, şebek û aşûriyan binpê dikin. Rapor hêzên pêşmerge û saziyên ewlekariyê yên kurd bi vêya tohmetbar dike ku 'karên tirsnak li dijî kesên ser bi kêmneteweyên navborî bicî tînin' li gel hewldanên berpirsên siyasî yên kurd ku 'bi hêza pereyan' dixwazin kêmneteweyên wan navçeyan bikişînin aliyê xwe û nasnameya kurdî bi ser wan de bisepînin.

Rapora ku li bin navê "Tundûtûjî dijî kêmneteweyên navçeyên cihê nakokiyê li parêzgeha Nînewa" hatiye belavkirin, daxwaz ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê dike ku wek du grubên nijadî yên cuda li şebek û êzdiyan mikur were, ji dêlva hewl bide wan wek beşekê ji neteweya kurd bide nasîn.

Joe Stork di daxuyaniyek bo Rûdawê red kir ku rapora wan bi mentaliteya dijayetikirina kurdan hatibe nivîsandin: "Rapor qet dijatiya gelê kurd nake lê rexneyê li hinek aliyan digre, wek hêzên asayîşa kurdî, lê bi tî awayan rexneya gelê kurd nake."

Joe Stork pêdagiriyê li ser wêya dike ku tiştê ku li beramberî kêmaniyan li parêzgeha Nînewa tê kirin, siyaseteke arastekirî ya desthilatdarên Herêma Kurdistanê ye û domand: "Kesên ku piştîvaniya agendaya kurdan nakin, ji aliyê hêzên asayîşa kurdî ve rastî tundûtûjiyê tên. Herwiha ti berpirs û karbidestên asayîş ji ser van tundûtûjiyan nayên cezakirin û lêpirsînkirin. Eger rayedarên kurd bixwazin pêşanî xelkê bidin ku ev ne siyaseta wan e, divê lêpirsînê li gel berpirsên asayîşê bikin."

Piştî belavbûna raporê, Hikûmeta Herêma Kurdistanê daxuyaniyek belav kir û tê de wiha got: "Eger kêmnetewe bi destê kurdan tên çewsandin, naxwe çima berê xwe didin Herêma Kurdistanê û heta niha jî bi aştî tê de dijîn?" Li gel ku Joe Stork mikur tê ku Kurdistan ciheki tolerans e, lê dibêje: "Kesên bi agendaya kurdî ne razî ne pirsgirêk bo wan tên derxistin. Rast e toleranseke mezin li beramber kêmaniyan li Kurdistanê heye, lê belê li bermaber opozîsyona siyasî tune."

Rapora navborî li Herêma Kurdistanê li ser astê cemawerî hersek çêkir, bi taybet di beşê ku dibeje ku êzdî û şebek ne kurd in.

Di bersiva pirsa ka gelo HRW xwe sipartiye çi belgeyan heta biryarê bide ku êzdî û şebek ne kurd in, Stork wiha got: "Ev gotina gelek êzdî û şebekan e, ne biryara me ye. Dizanim ku di derbarê bersiva vê pirsê di nav wan gruban de fikrên cudahî hene, herwiha dizanim ku berpirsên kurd jî kurdan dehif didin ku wan wek kurd bizanin, lê piraniya kesên ser bi wan kêmaniyan tişteki din dibêjin û em jî bi tenê ra û nerînên wan vedibêjin. Eger ew bixwazin bibin kurd, bê guman dikarin bibin kurd, lê eger nexwazin divê wê demê mafê wan hebe ku nebin kurd. Êzdî kêmaniyeke olî ne, lê dibe ku nêzikî kurdan bin û dibe ku kurd bin jî, lê ew kêmanî ne û divê bi vî awayî danûstandin li gel wan bê kirin."

## Wezîrê Xwendina Bilind Dilawer Eladdîn:
# Salên pêş de zanîngeh êdî bê ezmûn e

*Biryar hat girtin ku li Herêma Kurdistanê hevkariya xwendekarên ku pêwîstiya wan bi çend pileyan heye,bêkirin. Herwiha wê di sala bê de sîstemê ibûr nemîne.*



*Xwendevanên ku pileya wan li jêrî 50'an be wê alîkariyeke taybet wergirin* (Wêne: Rûdaw)

**FERYAD MİHEMED**

Li Herêma Kurdistanê di derbarê yasaya perwerdeyê de hin guhertin cêdibin. Li gor agahiyên ku Wezîrê Xwendina Bilind Dilawer Eladdîn da Rûdawê wê di sala pêşiya me de xwendevar bê ezmûn karabin herin zanîngehê. Eladdîn pirsên Rûdawê bersivand:

***Di derbarê asta xwendinê li zanîngehên Kurdistanê de gelek gazin tên kirin. Herwiha di ragihandina listeya herî dawî ya baştirîn 500 zanîngehên cîhanê navê ti zanîngehên Kurdistanê tunebû.***

Giliyê ku li ser asta xwendinê tê kirin di cihê xwe de ye, ji ber ku astê wê hê nizim e, lê belê ne di pileya sifir de ye. Berevajiya wê, asta xwendinê li zanîngehên Kurdistanê bi pêş ketiye, lê ji ber ku sîstema xwendinê bi xwe bi pirsgirêk e, lewre îmkana bilindkirina asta xwendinê sînordar e. Ji bo ku asta xwendinê bigihe astên cîhanî, proseyeke zehmet e û pêwîstiya wê bi demekî dirêj û kareki zêde heye. Lewma erkeki mezin li pêşiya me ye bo guherandina tevahiya sîstemê, da ku di pêşerojê de astê zanîngehên me bigihe astên cîhanî.

***Li gor dîtina gel di wezarete we de destwerdana partiyan heye, hûnê heta çiqasî bo dûrxistina partiyan ji zanîngeh û peymangehan kar bikin?***

Emê bi ciddî hewl bidin ku valahiya sîstemê dagirin. Lewma divê rojek bê meseleya destwerdanê di çarçova karên wezaretê de nemîne. Niha jî piraniya serkirdeyên siyasî soz dane xelkê û hikûmetê jî, heta bikarin hevkariyê bikin û rê nedin destwerdana partiyan.

***Berbijêriya we jî aliyê YNK'ê ve hatiye destnîşankirin. Ev nabe asteng bo karkirina nehiştina partiyan li zanîngeh û peymangehan?***

Na, ji ber di berjewendiya hemû partiyan de ye ku asta xwendina zarokên welatê me bilind bibe. Hemû partî jî vêya hembêz dikin.

***Ev çend sal e ku vekirina zanîngehan bûye propaganda hilbijartinan. Gelo ev bi tenê propaganda listeyan bûn, yan kar bo vekirina wan tê kirin?***

Vekirina zanîngehan ne tenê propaganda ye, lê ev soz in û emê wan cîbicih bikin. Lê bo cîbicikirina wan pêwîstiya me bi misogerkirina pêwîstî û danîna pîvanên zanistî heye. Ev karê Wezareta Xwendina Bilind e, bi hevkariya tevahiya wezaretên din e.

***Xwendekar gilî dikin ku sîstemê ibûr (ezmûnên bo zanîngehan) ziyanê digihîne xwendekar û sîstema xwendinê bi giştî. Hûn vêya çawa dibînin?***

Salane behsa vê babetê li civata wezaretê tê kirin. Ji me tê xwestin bi awayê herî baş û li gor pîvanên baş li gor berjewendiya xwendekaran û berjewendiya giştî ya Herêma Kurdistanê heybeta akademî ya zanîngehên xwe biparêzin. Biryar hat girtin ku hevkariya xwendekaran bê kirin, yên ku pêwîstiya wan bi çend pileyan heye da ku di madeyekê de serkevin, yanî ewên pileyên wan li jêr 50 ne. Lê di sala bê de sîstemê ibûr namîne.

***Hûn yek ji wan kesan bûn ku we rexne li karê desthilata siyasî û hikûmî ya Herêma Kurdistanê dikir. Gelo ji bo beşdariya we di hikûmetê de we ti merc danîbûn?***

Dema pêwîstiya welat bi me dibe û daxwaza xizmetê li me dike, nabe em şert û mercan deynin. Lewma ti mercên min nebûn. Helbet, ji min re giring bû ku rêya guherandina bingehînî di sîstema xwendinê de li pêşiya me vekirî be û serkirde jî giraniya xwe bixin pal hewldanên me. Ji ber ku bêyî cîbicikirina guherinan di sistema berê de pêşketin dijwar e. Serkirdeyan bi xwe ev soz dane xelkên

# 21 mamosteyên kurdî zêde bûn

*Tevlî ku dewleta tirk destûra perwerdeya bi zimanê kurdî heta niha nedaye, lê dîsa jî komelên kurdan di nav hewldana perwerdekirina mamosteyên zimanê kurdî de ne. Armanc perwedeye di dibistanên frmî de ye.*



*Dewleta tirk heta niha perwerdeya zimanê kurdî tenê di kursên taybet de qedûl dike* *(Wêne: Diha)*

**Îzmîr (Rûdaw)** - Şaxa Îzmîrê ya Kurdi-Der'ê hefteya borî bi merasimekê beşdarên kursa zimanê kurdî mezûn kirin. Di merasimê de 21 jê mamoste, bi tevahî 32 eşdarên kursê sertifîkayên xwe wergirtin. Merasim li Komeleya Çanda Mezapotamya hate lidarxistin û gelek kes amade bûn, di nava wan de parlamentera DTP'ê ya Wanê Fatma Kurtulan, parlamantera Şirnexê Sevahîr Bayindir, Serokê Enstîtûya Kurdî ya Stenbolê Samî Tan jî hebûn. Di merasimê de piraniya jin û zarokan bal kişand. Merasimê bi rêzgirtinê dest pê kir û sînevizyona li ser xebatên zimanê kurdî û dimenên nivîskar û rewşembîrên kedkarê zimanê kurdî û rojnameyên kurdî hate pêşkêşkirin. Di merasimê de bi kurdî axaftin hatin kirin û zedetir li ser girîngiya ziman hate rawestandin. Parlementera DTP'ê ya Şirnaxê Sevahîr Bayindir ji ber xwedî lê derneketina kurdî rexneyên tûj kirin û wiha got: "Şerm e ku mirov ji yekî re bêje li zimanê xwe xwedî derkeve û bi zimanê xwe biaxife. Sebra me jî nemaye".

Serokê Komeleya Kurdi-Der'ê Mustafa Boraz jî axaftinek kir û bang li hemû kesî kir, da ku ew li zimanê xwe xwedî derkevin. Borak mezuniyeta zimanê kurdî û merasima ku li dar xistin jî bi gotinên wekî "Rojek dirokî" bi nav kir û got ku çend sal ewil tiştekî wiha xeyal jî nedikirin. Borak derbirî ku zimanê kurdî hêdî hêdî digihêje fermiyetê û bang li hemû kurdan jî kir ku ji bo vê yekê amedekariyan bikin.

# Nexweşê kurd derman nekirin

*Doktoreke tirk nexweşê penceşêrê yê kurd derman nekir û ji nexweşxaneya zanîngeha Îzmîrê paşve şand.*

**İzmir (Rûdaw)** - Li bajarê Îzmîra Tirkiyeyê, hemwelatiyekî kurd bi navê Süleyman Elmas ji ber ku ji Mêrdînê ye, tevlî ku diyar bû nexweşê penceşêrê ye jî li nexweşxaneya Zanîngeha Îzmîrê nehatiye dermankirin û tedawîya wî nehatiye kirin.

Süleyman Elmas bi eslê xwe ji bajaroka Stilîlê ya Nisêbînê ye. Ew serpêhatiya xwe wiha bilêv dike: "Di 16.06.2009'an de nexweşxaneya Mêrdînê (Mardîn Park) ji ber girêka ku di stuyê min de derketibû, ez muayene kirim. Piştî tahlîl û nêrînan biryar dan ku ev girêk pençeşêr e, ez şandim nexweşxaneya Zanîngeha Îzmîrê. Li wê derê jî piştî tahlîlan teşhîsa 'diffuz lenfomaya bi hucreyê mezin' hat pejirandin. Ji ber wê yekê ez şandim beşa hemotolojîyê."




*Süleyman Elmas* *(Wêne: Rûdaw)*

Süleyman Elmas dibêje ku ew di serî de baş hatiye pêşwazîkirin. Çend mehan tahlîl û rontgenên wî hatine kişandin. Ji ber wê yekê jî piştî çend rojan ji bo van rontgenan nîşanê doktor bide dîsa çûye nexweşxaneyê. Lê doktorê wî guheriye û li şûna wî doktoreke (F. Ö) din rûniştiye. Piştî ku ew doktor li dosyeya wî dinêre, dosyê dibe konseya beşê. Jê re dibêje ku sibehê were.

Ew jî sibehê dihere. Dr F. jê re dibêje, "Çima tu li Mêrdînê tedavî nebû, tu hatî vê derê?" Ew jî dibêje, "li Mêrdînê beşa vê nexweşiyê tune ye, ji ber wê yekê ez hatime vê derê." Doktor dibêje, "ez nikarim nexweşekî ji Mêrdîn hatiye tedavî bikim, tu bi ku de diherî here."

Süleyman, dihere ji doktorekî din re dibêje. Ew doktor jî telefonî wê doktorê dike, lê feyde nake û Dr. F. gefan li wî doktorî jî dike.

Süleyman, cara dawîn xwe davêje Dr. F. û dibêje; "hama dermankirina pêşî ya ku lazim e bike, heta ez diherim cîhekî din." Lê Dr. F. dibêje; "ez kesekî Mêrdînî tedawî nakim" û li kaxeza wî lê dike ku tedawîya wî hatiye temamkirin. Lê belê piştî vê yekê Süleyman diçe Edeneyê û tedawiya xwe bi heman şêweya li wir dom dike.

# Berlêgirê demokrasiyê û kurdan kemalîzm û milîtarizm e



Bayram Ayaz

Li Rojhilata Navîn, Qefqasya, Afxanîstan û Pakistanê siyaseta navnetewî ku wek globalizm tê binavkirin, di azmûnekî re derbas dibe. Rojhilata Navîn û hewza Behra Hezarê du deverên girîng yê serçaviyên petrolê û xazê ne. Pîlaneke geo-politîk ya navnetewî ku nikaribe serçaviyên xaz û petrolê kontrolê bike, nikare bibe sistema cîhanê.

DYA beramberê rewşeke wisa ye. Gelo Amerika wê bikare serkêşiya sîstema cihanê bike, an na? Bi pêşengiya DYA'yê "Rojavayiyan" dikaribû bloka dewletên sosyalîst biruxînin. Sîstema ku Rojavayiyan dixwest cîbecîh bikin, di demeke kurt de li Ewrûpayê pêk hat. Pirsgirêka dawî Yugoslavya jî çareser kirin. Niha bi Kosova, Albanya û Montonegro re mijûl in. Ji bo întegrasyona siyasî û îdarî ya van deveran û ya dewleta Sirbistanê kar tê kirin. Li Ewrûpa astengî nemaye. Hewldanên gorînê gihaye Ûkrayna û bi rûsan re jî siyaseta "pişo pişo'yê" tê meşandin.

Zahmetiyên sîstema cihanê li "Rojhilat" e. Li Rojhilata Navîn, hewza Hezarê û derdorê çala Asya Navîn gelek zahmetî heye. Yanî xirûcir li ser û dorberên xeta hevrîşîmê (silk route) ya dîrokî ye. Ya ku ji qeraxê Bahra Spî dest pê dike û di ser Bexdayê re berê xwe dide Tehranê, Meşhedê, Semerkandê û Kabulê û ji wan deran derbasê Hindistan û Çînê dibe û diçe digîhe heta Japonyê. Mirov dibêje qey dîrok xwe dubare dike!

Xeta hevrîşîmê ya dîrokî wekî xwe maye, lê pîlanên geo-politik guherîne. Îro pirsa pîlana Nabucco-Pipeline, Trans-Caucasian Pipeline, BTC-Pipeline: Baku-Tbilissi-Ceyhan, Trans-Afghanistan Pipeline (Turkmenistan-Afghanistan-Pakistan-Pipeline / TAP) li holê ne. Pirsa Îranê li ser masê ye. Ev rejîma teokratîk bibe xwediyê çekê atomî, wê çi biqewime? Amerîkî û hêzên hevkar li Afxanîstanê li pêş Talîbanan û El Qaîdeyê têk biçin, wê çi sosret bi serê globalizmê werê? Pakistan bi ser xwe de newê û bikeve destê hêzên oldar, radîkal-fanatîk, wê çi bandora xwe li ser pîlanên siyasî û aborî, stratejîk bike?

Dinya serê xwe bi van pirsan diêşîne. Di vê navberê de mijara Tirkiyeyê her tim li ser masayên guftûgoyên stratejîk bûye. Taybetî ji sala 2007'an û virde amerîkî dixwazin Tirkiyeyê xurt bikin. Du projeyên girîng di ser Tirkiyeyê re derbas dibin: Nabucco û BTC Pipeline. Tirkiye jî dibîne ku ji vê konjonkturê dikare sûdê werbigre. Elîta nû ya aborî û siyasî dixwaze ji vê konjonkturê îstîfade bike û xwe bi hêz bike. Karsaz û ticarên nu ku wek "Pilingên Anadoluyê" tên bi nav kirin, vê konjonkturê baş tê gihîştine. Elîta siyasî jî bi temsîla AKP'ê dixwaze vê rolê bi cîh bîne. Siyaseta Prof. Ahmet Davuto□lu ya bi navê "bi cîranan re sifir pirsgirêk" armanca xwe ev e. Dostaniya Erdo□an li beramberê kurdan parçeyekê ji vê siyasetê û têgihîştinê ye.

Vî tiştî amerîkî û hemî rojavayî ji Tirkiye dixwazin. Dibêjin tu dikarî bibî dewleta serkêşa herêmê, em jî alîkariya te dikin. Lê divê tu pirsên nava xwe çareser bikî, demokrasiyê xurt bikî, hingê bikarî ji dorberê xwe re bibî mînakekî qenc. Bi rejîmeke milîtarist û bi zihniyeteke nasyonalîst mirov nikare bi Îranê re rekabetê bike, bibe rêberê Azerbeycanê, Gurcistanê, Turkmenistanê, İraqê, Îsrailê û welatên din. Eger mirov pirsgirêkên xwe yên dîrokî bi Ermenistanê re çareser neke, Ermenistan her dimîne li ber û bin destê Rûsya û Îranê. Eger tu bi gelê kurd re aşîtiyê çê nekî, tu nikarî bibî şirîka xaz û petrola Kerkûk û Kifrî û Zaxo û Taqtaqê…

Tirkiye mecbûr e guh bide doz û daxwazên sîstema navnetewî. Tirkiye mecbûr e li demokrasiyê bigere û digere jî. Ev jî di feyda me kurdan de ye. Di berjewendiya Kurdistana azad de ye jî.

Lê hêzêk heye ku dibîne ku di vê pêvejoyê de dem û dewran ji destê wan derdikeve. Ev jî kemalîst in. Kemalist nikarin bi gelê kurd re aşîtiyê çêbikin. Kemalîst nikarin bi hêzên dîndar û muhafazakar re li hev werin. Kemalîst nikarin dest ji projeya netew-dewleta tirkçî berdin. Ji bo vê yekê wan roleke ûltranasyonalîst hildane ser milê xwe û eger ji destê wan werê hê jî dixwazin kurdan bikin tirk! Serkêşiya vî şerî ordî dike, lê ew jî êdî ne yekparçe ne. Gelek ji generalan dibînin ku êdî ew nikarin wisa bi hêsayî darbeyan bikin. Lê cardin jî li berxwe didin. Du roj berê (19.11.2009) rojnameya TARAF'ê careka din planeka nû ya van hêzan derxist holê. Navê vê planê jî "Pîlana operasyon û hêrîşên Kefesê" ye. Ev pîlan di meha adara îsal de hatiye amadekirin. Bi kin û kurt, hêzên kemalîst û milîtarîst li pêşiya hewldanên demokrasiyê astengiyan derdixin û lê kar dikin ku lêgerînên çareseriyê ji bo doza kurdan pûç bikin. Heta pişta van cuntaciyan neyê şikestin, wê zor û zehmetî ji bo cîbecîh kirina demokrasiyê û doza kurdan her berdewam be.

Pirseka balkêş e ku kemalîst û tirkçiyên tûranî li dijî pîlana dewletê derdikevin. Dewlet dixwaze xwe reforme bike, ev hêz li dijî derdikevin. Ew dewleta ku ji bo van hêzan gelekî pîroz e, di ser her tiştî re ye! Em careka din bêjin, îro ya rast ew e, kurd ji kemalîstan dûr bin, nebin aletê wan, bi hîç awayî û alîkar bin ku hêza kemalîstan têk here.

Sekreterê Komela Zehmetkêşan a Kurdistana Îranê Ebdûllah Mûhtedî:

# Xebata çekdarî xizmeta tevgera me ya siyasî nake

*“Kurd hemû yek netew in, lê xelkê her parçeyekê dikare li wan parçeyan çarenûs û siyaseta xwe diyar bike. Erkê li ser milê parçeyên din ên Kurdistanê jî ew e ku piştgirî û alîkariya hev bikin.”*

**SABÎR QADİRÎ**

**Rûdaw** - Bi nêrîna Ebdûllah Mûhtedî serdema çekdaninê nehatiye, lê niha ji bo despêkirina şerê çekdarî ne demekî lêhatî ye. Mûhtedî di hevpeyvîneke li gel Rûdawê de dibêje, pêwîste kurd beşdarî tevgera nerazîbûna xelkê Îranê bibin.

***Ev yek li ser zimanê we belav bûye ku PKK terorîst e û bi giştî pir rexneyan li PKK’ê digirin. Sedemê vê çiye?***

Nexêr, min qet negotiye PKK terorîst e. Welatên Ewrûpa û Amerîka vê binavkirinê ji neyarên xwe re bikartînin. Ne pêwîste rexnegirtin yan nirxandina partiyek kurd ji ramanên wan sûdê werbigirin. Pirsgirêkek me ya taybet li gel PKK’ê nîne. Kurd hemû yek netew in, lê xelkê her parçeyekê dikare li wan parçeyan çarenûs û siyaseta xwe diyar bike. Dikarin partiyên xwe diyar bikin. Erkê li ser milê parçeyên din ên Kurdistanê ye jî ku piştgirî û arîkariya wan bikin, lê mafê wan nîne xwe bikin berdêl. Ew li gel me nayê pejirandin, di demê xwe de PKK’ê ew pirsgirêk li Kurdistana Îraqê jî durûst kir. Di çend salên derbasbûyî de li Kurdistana Îranê di hewla wê yekê de bû ku li alterntîfan ava bike û destkariyê bike.

***Armanca we ji avakirina alternatîfan û destlêwerdanê hebûna PJAK’ê ye?***

Belê. Em piştgiriya xebatê Bakûrê Kurdistanê dikîn. Ew li ser wan e ku şêwazê xebatê ji bo gehiştina armancên xwe hilbijêrin. Erkê me ye em piştgiriyê bidîn xebata wan û em wê yekê ji bo xwe jî dixwazîn. Kurdistana Îranê xebat û partiyên xwe yên siyasî hene û hilbijartina xwe heye.

***Ew destlêwerdana hûn behs dikin, ji aliyê rayedarên başûrê Kurdistanê ve hatiye kirin?***

Min nedîtiye. Min nedîtiye ew ti partiyê ava bikin. Em bi dil û canê xwe piştgiriya Amed, Mêrdîn û Kurdistana Tirkiye dikin. Em naçîn li wê derê rêxistinekê durûst bikîn, alternatîfan saz bikîn û pirsgirêkekê derbixin. Erkê li ser milê me ye ku piştgiriya wan bikîn. Sine, Mehabad û Kirmanşah jî têkilî bi me ve heye, em li benda wê yekê ne ku beşên din yên Kurdistanê jî bi hemû partiyan ve piştgiriya me bikin.

***Partiyên Rojhilatê Kurdistaê nikarîbûn pirsgirêka Kurdistanê bi derve bidin naskirin, çima?***

Cîhana Rojava Îran bi welatekî “homojen” yan “monolêt” yan jî yekparçe naskirine. Ango wekî welatekî ji yek pêkhateyê durûstbûyî naskirîne. Hewlek zêde daye ku wê yekê li dinyayê bide xuyakirin. Dibe ku Îran pir netewtirîn welatê Rojhilata Navîn be û cihê bicihbûna 6 neteweyên cûda ye. Ev 10 sale me qûnaxek nû ya xebata xwe daye despêkirin. Hewla ku me dayî, ji bo pejirandina wê rastiyê ye. Bi rêya pêkanîna rêxistinek bi navê Kongreya Neteweyên Îran a Federal bû. Em, Partiya Demokrata Kurdistan a Îranê û Partiya Azadiya Kurdistanê têde beşdarîn.

***Berî demekê dengê wê yekê hebû ku Kongreya Neteweyên Îran a Federal, serokatiya kurê Şah Rezayê Pehlewî pejirandiye. Ev yek raste?***

Ti bingeheke vê yekê nîne.

***Bi giştî ti têkiliyek di navbera wê kongreyê û kurê şah de heye?***


*Ebdûllah Mûhtedî* *(Wêne: Rûdaw)*

Di van çend salên dawî de kurê Şah Riza Pehlewî çûye serdana gelek rêxistin û kesayetên kurd. Par yan jî pêrar bû, yekcarî hat û daxwaz kir ku li gel kongreyê rûne, bi giştî kongrê ev daxwaz pejirand û di wê kongreyê de me ji wan re eşkere kir ku çima Îran pir netewiye û ji bo çareseriyek lêhatî federalîzm take rê ye. Piştî vê rûniştinê jî kurê Reza Pehlewî li gel aligirên xwe konferansek sazkir û bi awayekî erênî li ser federalîzmê axifî. Pehlewî ragehand ku nabe em ji federalîzmê bitirsîn û federalîzm Îranê parçe parçe nake.

***Ew gelê ku piştî hilbijartinan li Tehran û cihên din ên Îranê nerazîbûn nîşan dan, li Rojhilatê Kurdistanê nehatin dîtin. Sedema vê yekê çi ye?***

Nerazîbûn heye, pir kûre û di destpêkê de Kurdistan ber bi rojiya birçîbûnê ve çû. Di hinek bajaran de jî serkeftî bû. Ev jî raste ku ew tevgera gel a li Tehranê heyî, li Kurdistanê nayê dîtin û gelek sedemên dîrokî yê vê yekê hene. Li aliyekî din jî ew Kurdên li Tehranê, ji karkeran bigre heya xwendekaran, di wê tevgerê de beşdar bûn. Lê bi giştî gelê Kurdistanê ji wê yekê ne piştrastin ku ew rejîm heya çi astê lawaz bûye û dizanin eger li Kurdistanê tevgerekî gelî bi wêneyê wekî Tehranê li holê be, wê Komara Îslamî pir girantir û bêrehmetir serkutî bike.

***Ew lêkdana xelkê di cihê xwe de bû?***

Bi nêrîna min kiriban, baştir bû. Kurd ne xwe ji wê tevgerê dûr dixin û ne jî têde diyar dibin. Ez ne alîgirê taktîkên nekêrhatî me, lê tevlîbûna kurdan di wê tevgerê de bi şeklekî siyasî û medenî, hem ji bo tevgerê û hem jî ji bo kurdan sûdmend e.

***Di çend mehên derbasbûyî de çend pêşmergeyên girêdayî partiyên kurd di pevçûnek li gel hêzên Komara Îslamî de jiyana xwe ji dest dan. We jî ew pêngav bi pêngavekî neyênî bi nav kir. Vê pevçûnê çavkaniya xwe ji çi girt?***

Berî her tiştê ez bi bûyerek dil tezîn dibînim. Lê di rastî de ez wê pêngavê bi pêngavekî pir lêhatî ji bo serdema niha nabînim. Bi nêrîna min hêzên pêşmergeyên Kurdistanê divê bên ragirtin, lê nabe di rewşa niha de operasyonên çekdarî û çalakiyên pêşmergeyan bên pêkanîn. Bi nêrîna min armanca wê êrişê ne ew bû ku em qonaxa xebata çekdarî bidîn despêkirin. Bi nêrîna min di rewşa niha de xebata çekdarî xizmeta tevgera siyasî, çandî, rewşenbîrî û rêxistiniya niha a li Kurdistana Îranê nake. Bi nêrîna min şehîdbûna wan pêşmergeyan li cihê qezencê, wê zererê bigihîne xelkê Kurdistanê.

***Ebdûllah Muhtedî kî ye?***

- *Li bajarê Bokan ji dayîk bûye.*
- *Kurê Rehman Muhtedî ye ku yek ji wezîrên Komara Kurdistanê a li Mehabadê bû.*
- *Li zanîngeha Tehran’ê xwendevanê beşa aborî bû.*
- *Li sala 1969’an de li gel çend xwendekarên din Komele damezirandiye.*
- *Di kongireya sêyem a wê rêxistinê de bûye sekreter.*
- *Piştre li gel çend alî û kesayetên din Partiya Komînîst a Îranê ava kirin.*
- *Di sala 2000’an ji partiya Komûnîst cûda bû û bi navê Komela Şoreşgerî rêxistinek saz kir.*

# Greva girtiyên kurd li zindana Edra ya Suriyeyê didome


*Girtiyên kurd ên li zindanek Suriyeyê*

**Şam** – Li zindana Edra ya Suriyeyê greva birçîbûnê ya 300 girtiyên kurd yên endamên Partiya Yekîtiya Demokratîk (PYD) bi armanca şermezarkirina zordariyên li girtîgehan û başkirina şert û mercan di 30’ê Cotmehê de dane destpêkirin kete roja 26’an.

Zordariya rejima Suriyeyê ya li ser girtiyên kurd didome. Bi armanca protestokirina zordariyên li Girtîgeha Edra ya Şamê 300 girtiyên PYD’î di 30’ê Cotmehê de ketibûn greva birçîbûnê. Girtî dixwazin zordarî bi dawî bibin, bikaribin bi malbatên xwe re hevdîtinê bikin û radyo û tv’yê bidin wan. KCK-Rojhilat di derbarê mijarê de daxuyaniyekîbelavkir û diyar kir ku rewşa girtiyan her diçe xirabtir dibe. Girtiyên PYD’yî ev cara 4’an e bi armanca şermezarkirina zordariyan dikevin grevê.

Ligel grevê jî zordariyên li ser girtiyan berdewam dikin. Dadgeha Ewlehiya Dewletê ya Şamê li 5 girtiyên çalakvan ceza birî. Li aliyê din girtiyên di greva birçîbûnê de beşdarê danişîna dadgehê jî nebûne. Girtiyên ceza li wan hatiye birîn Munzir Ebdîl, Fetah Şor, Ciwan Mihemed Ehmed, Hesen Xalid Qido, Xelîl Feydê Delî, Menan Ehmed Seydo ne.

Nerazîbûna li hemberî rejîma Suriyeyê de zêde dibe û çalakiyên piştgiriya girtiyên PYD’ê li gelek welatên Ewrûpayê didomin.

## Xwepêşandanên li dijî hovîtiya Îranê didomin

**Köln** - Piştî darvekirina ciwanê kurd Îhsan Fettahiyan di 11’ê vê mehê de, çendîn xwepêşandinên li dijî rejîma Îslamî ya Îranê li dar ketin. Bi vê munasebêtê di 20’mijadarê de kurdên Ewrûpayê li pêş balyozxaneya Îranê ya li Hollandayê çalakiyek nerazîbûne li dar xistin. Beşdarvanên çalakiyê bangî rejîma Îranê kirin ku darvekirina mirovan rawestinê û daxwaz ji rayedarên Ewrûpî kirin ku zextê li kikûmeta wî welatî bikin ku mafê dest ji davekirina mirovan berde û mafê kurdan nas bike. Ji ber “sûcên“ cude niha 12 girtiyên kurd li Îranê li ber darvekirinê. Meş bi piştevaniya van sazî û rêxistinê kurd hatibû amadekirin: YCDKÎ, PDK-Î, Komeleya Şoreşgerên Zahmetkêşên Kurdistana Îranê, Tîma Kurdî Mîdya (Amsterdam), Kampanya Berevaniya Girtiyên Siyasî û Sivîlên Kurd, Çavdêriya Kurd û Sayd.


*Kurd li dijî rejîma Îranê li ser piyan in.*

# "CHP mîmarê komkujiyê ye"

Enqere/Köln (Rûdaw) - Nerazîbûniyên Elewiyên kurd li dijî daxuyaniya Onur Öymen li Kurdistanê, Tirkiyeyê û Ewrûpayê didomin. Parlementerê DTP'ê yê Dêrsimê Şerafettin Halis ragihand ku bi gotinên Öymen teqînek pêkhatiyê lê wan ji mêj vê daxwaziya navên Dêrsimê û li ser bûyerên 1938'an ji Parlamentoyê lêpirsîn û lêkolînan kirine. Seroka Şaredara Dêrsimê Edibe Şahin jî got ew ne gitinên Öymen in, lê yê CHP'ê ne û li Dêrsimê êdî CHP nikare ji kurdên Elewî dengan bistîne. Serokê Konfederasyona Komeleyên Elewî yên Dêrsimê Yaşar Kaya, Öymen wek General Alpdoğanê hemdem bi nav kir û got CHP jî mîmarê komkujiyê ye. Li Stenbolê jî Teşebûsa DurDe (BêjeBes e), Cîgirê Serokê Giştî yê CHP'ê Onur Öymen, wekî "nijadperêstê mehê" bijart.




Di runiştina li Parlamena Tirkiyeyê ya di derbarê 'vebûna demokratîk' de roja 11'ê mijdarê AKP, CHP, MHP û DTP'ê nêrînên xwe anîbûn ziman. Li ser navê CHP'ê Cîgirê Serokê Giştî Onur Öymen siyaseta hikûmetê sûcdar kiribû û wiha gotibû: "Atatürk bi Şêx Saîd re muzakere kir? Atatürk bi serhildêrên Dersimê re muzakere kir? Çi pêwîst dikir Atatürk wê yekê kir. Di şerê Çanakkaleyê de, di sala 1925'an de di serhildana Şêx Saîd de jî dayîk digiriyan. Di serhildana Dêrsimê de jî dayîk digiriyan û tu kesê nedigot negirîn. Hikûmeta wê demê tiştê ku diviya wê kir."

Wek tê zanîn di salên 1925 û 1937-38'an de di dema serhildana Şêx Seîd û Dêrsimê de bi dehan hezar kurd tevî serokên berxwedanê jî alî artêşa tirk ve hatibûn kuştin û kurdistan hatibû wêranekirin. Piştî qetliaman navê Dêrsimê wek 'Tunceli' yanê 'kulma hesinî' hatibû guhertin.

Serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayip Erdoğan jî li ser axaftina Öymen gotibû ku 'kesên ku komkujiya Dêrsimê biparêzin jî mirovahiyê nesibên xwe negirtine.'

Daxuyaniya Öymen di heman demê de di çapemeniyê û raya giştî de bû sedemê nerazibûnan. Rêxistinên sivîl yên kurd û tirk jî CHP xwestin ku ew jî Elewiyan lêborînê bixwazin û Öymen jî wê jî partiyê istifa bike. Lê Serokê CHP'ê Deniz Baykal piştgirî da Öymen û got ku 'bûyerên ku bêrê pêkhatine divê di pêşiya wan de nebin asteng û jî nû ve neyên niqaşkirin.' Daxuyaniya Öymen û helwesta Baykal di nav Elewiyên ku 72. Salvegera komkujiya Dêrsimê bibîrtînin de bû sedemê nerazîbûn û çalakiyan.

**"Em li benda bersiva parlementoyê ne"**

Parlementerê DTP'ê yê Dêrsimê Şerafettin Halis di derbarê mijarê de pirsên Rûdawê bersivand û got ku mijara Dêrsimê û pirsgirêka Elewiyên kurd ne tenê ew tişt in ku bi daxuyaniyên Öymen ketine rojevê: "Me di meha sibatê de ji bo bûyerên ku di navbera salên 1937-1938'an de li Dêrsimê pêkhatine bêne lêkolînkirin, 3 lêpirsîn, xek lêkolîn û yek jî pêşniyarname daye parlamenê." Parlamenterê Dêrsimê Halis ragihand ku di pêşniyarnameyê de wan xwestiye ku navê Dêrsimê disa bê iadekirin, lê heta niha tu bersivek erênî negirtine: "Di lêpirsanan de me pirs kir ku ew bûyerên bûne sedema kuştin û brindarbûna bi dehan hezar kesî gelo dibe ku wek komkujî bên navkirin an na. Herwiha me wateya tenkîl û tedîbê pirsî û di wan bûyeran de çiqas jin, zarok û kal hatine kuştin; çiqas keç revandine û ew zarokên sêwî pirsî." Halis destnîşan kir ku wan di pêşniyarnameyan de xwestine ku gora serokê berxwedana Dersimê Seyit Riza bê eşkerekirin û ji bo vê yekê divê li Parlamena Tirkiyeyê komisyonekî lêkolînê bê avakirin.

Halis ragihand ku li Dêrsimê ji CHP'ê istifayan destpêkirine û rûyê Kemal Kılıçdaroğlu yê Dêrsimî ku cîgirê Baykal e jî baş hatiye naskirin: "Bi xebatên me li Dêrsimê dawiya CHP'ê hatiye. Lê daxuyaniyên Öymen jî teqînek çêkir û rûyê rasteqîn yê CHP'ê di nava kurdên Elewî de careke din hat naskirin."

**"Ew ne gotinên Öymen in, ên CHP'ê ne"**

Seroka Saredara Dêrsimê Edibe Şahin ji jî Rûdawê re ragihand ku CHP'ê heta îro bi çavê depoya dengan li Dêrsimê û kurdên Elewî mêzekiriyê, lê daxuyaniyên Öymen rastiya CHP'ê derxistine holê: "Ew gotin ne yên şexsê Öymen in, ew siyaseta CHP'ê ya bi deh salan e. Li bajêr û navçeyan gelek kesan ji CHP'ê istifa kirin. Êdî tu şanseke CHPê li Dêrsimê tuneye. Divê di hilbijartina dawîn de ev rastî fahmkirina, lê xuya ku fahmnekirine."

Şahin serdana Serokkomarê Tirkiyeyê Abdullah Gül a meheki berê jî bibîranî û got wan ji Gül daxwaza guhertina navê Tunceliyê (Dêrsimê) kirine û wî jî bi germahî ev yek nirxandiye. "Jiber ku navê Dêrsimê ne wek navê gund û bajarên din, lê piştî komkujiyê bi yasayekî taybet hatiye guhertin. Gül jî me pirsî ka çend kes dixwazin nav bê guhertin, me jî got em dikarin referandum bikin û encam wê jî sedî sed be; jî ber ku tu caran kurdên Elewî navê Tunceliyê bikarnaynin. Em jî di kar û civînên xwe de hertim navê Dêrsimê bikartînin."

**"Onur Öymen General Alpdoğanê îro ye"**

Serokê Konfederasyona Komeleyên Elewî yên Dêrsimê Yaşar Kaya jî Rûdawê re got ku ew Cîgirê Serokê Giştî yê CHP'ê Onur Öymen wek General Alpdoğanê hemdem bi nav dikin û daxuyaniya wî di çarçova yek netew, yek al, yek bawerî de dinirxînin. Kaya got ku wan du sal berê bi armanca eşkerekirina gorên qetilkiriyên Dêrsimê û lîsteya zarokên sêwî ku jî malbatên tirk re kirine ewlad bên eşkerekirin, li Dêrsimê kampanyayek destpêkirine: "Ev kampanya hêj didome. Me bi vê armancê di 14'ê Mijdarê de li Elezîzê, Meydana Genim, cihê ku Seyît Riza û hevalên wî hatin sêdarekirin daxuyaniya çapemaniyê da û me xwest ku cihê gorên wan bê eşkerekirin. Herwiha wek tê zanîn piştî komkujiya Dêrsimê gelek zarokên ku sêwî mabûn birin bajarên Rojavayê Tirkiyeyê. Di dibistanan de wan asîmîle kirine û wek ewlad dane malbatên tirk. Hejmara wan, navên wan û cihên wan ne diyar e. Me xwest ku ev jî bên eşkerekirin."

Kaya ragihand ku wan bi Federasyona Yekitiya Elewiyên Ewrûpa û Komeleyên Koçgiriyan re hefta borî ji Serokkomarê Tirkiyeyê Abdullah Gül re name şandine û daxwazên xwe anîne ziman. "Divê ew komkujiya ku li Dêrsimê pêkhat bê zelalkirin. Ji bo vê yekê em belgeyan, gotaran, pirtûkan, wêneyan û daxuyaniyên şahidên komkujiyê kom dikin."

## "Kurd baş dizanin 'Tunceli' çî ye"

**Köln (Rûdaw)** - Komkujiya Dêrsimê û qirkirinên li dijî Elewiyên kurd roja 19'ê Mijdarê li Parlamena Ewrûpayê di konferanseki de hat niqaşkirin û daxwazên Elewiyan di deh xalan de hatin diyarkirin. Elewî dixwazin ku navê Dêrsimê bê iadekirin û cihê gora Seyit Riza û hevalên wî bên eşkerekirin. Nivîskar Mehmet Bayrak di derbarê navê Dêrsimê yê bi tirkî Tunceli de jî axifî û got "kurd baş dizanin ku wateya 'Tunceli' çi ye."


*Mehmet Bayrak*

Federasyona Elewiyan a Demokratik û Komeleya Ji Nûh ve Avakirina Dêrsimê di derbarê qirkirinên Elewiyan, têkiliyên Elewiyan û dewletê de li Parlamena Ewrûpayê ya Brukselê hefta borî konferansek li dar xistin. Konferansa ku di himaya Grûba Çep a Parlamena Ewrûpayê hat lidarxistin, deh daxwazan diyar kir. Yek ji beşdarên konferansê Mehmet Bayrak ragihand ku wan daxwazên Elewiyên kurd anîne ziman û têkiliyên bi dewletê re nirxandine.

Bayrak bibîrxist ku 27'ê Mijdarê de bi heman naverokê wê li Parîsê jî konferansek were lidarxistin: "Tişta herî giring ew bû ku Elewiyan nerazîbûnên xwe di qonaxek wiha bilind de anîn ziman û rexneyên xwe li dewletê kirin. Bûyerên ku di salên 1937 û 38'an de li Dêrsimê pêkhatin wek qirkirin hatin binavkirin. Daxwazên me yên ku me di belavokê de diyar kiribû, ev in: Divê destûra 1982'an bê guhertin, navê Dêrsimê bê iade kirin, cihê gora Seyit Riza û hevalên wî were eşkerekirin, otêla Madimakê bibe muzexane, CHP jî Enternasyonala Sosyalist bê avêtin û pirsgirêka kurd were çareserkirin."

Bayrak helwesta Parlamenê DTP'ê yê Dêrsimê Şerafettin Halis a di derbarê guhertina navê Dêrsimê de jî bibîrxist û wiha got: "Niha ew daxwazî wek teklîfa yasayî li parlamenê ye. Lê wisa xuya dike ku ji bo navê Dêrsimê wê pirsgirêk dernexin. Jiber ku Tunceli naveki nijadperest e, dibe ku guhertinek çêkin; hemû kurd, hemû Dêrsimî wateya "tunç eli" baş dizanin. Herwiha me daxwaz kir ku gora Seyit Riza were eşkerekirin. Wek tê zanîn ji dema Osmaniyan û pê ve hertim serokên serhildanan dihatin girtin û gorên wan vedişartin. Hinek dibêjin ku laşê Seyit Riza û hevalên wî şewitandine. Di destê min de belgeyek tune ku ez bêjim 'ev rast e', lê di arşîvên dewletê de her tişt diyar e, lê naxwazin vekin."

## Serokê DTP'ê Ahmet Türk:

"Roja 10'ê mijdarê li parlamenê axaftinên ku hatin kirin, mijara ku ev 86 sal in nayên rojevê derxist holê. Ew kesê ku li ser navê CHP'ê axifî, ji damezrandina dewletê û heta îro, li dijî kurd û Elewiyan siyaseta ku hatiye meşandin, careke din anî ziman. Li gor CHP'ê mafê kurdan, Elewiyan û hemû komên din divê neyên dayîn û daxwaziyên wan hertim werin binpêkirin. Jiber ku li gor CHP'ê daxwaza mafên demokratik serhildana dijî dewleta yek netew, yek ol û yek ziman e. Disa li gor CHP'ê çawa ku li dijî dewletên emperyal şerê azadiyê hatibe meşandin, ev şer wek li Dêrsimê û li hundir li gelek deveran jî hatiye pêkanîn. Li gor vê siyasetê kurd, Elewî û hemû komên din dijminên hundir in. Eger ev kom, qaliba dewletê qebûl neke, divê bên kuştin û tunekirin.

## Serokwezîr R.Tayyip Erdoğan:

"Kesên ku bûyerên li Dêrsimê pêkhatine biparêze, di çavên min de ew ne mirov in. Em bi hestên dilsoz, bi niyetên pak ketin rê û armanca ew e ku em hêstirên çavên dayikan vemirînin. Statoku her çend bidome emê ewqas şehîdan bidin, wê ewkas mirin çêbin û wê ewqas xwîn birije, dil perçe bibin. Kesê ku bêje bila statuko bidome, ew dibe şirîgê mirinan, pevçûnan, xwînê, xirakirinê, bê huqûqiyê û bê mafîtiyê. Çi dibêjin? Dibêjin, bila dayik bigirin! Kesê ku vêya bêje bê wijdan e. Kesê ku bêjê bila dayik bigirin, bê merhamet e. Em çi Elewî bin, çi sunî bin, em hemû bûyera Kerbelayê dizanin. Em dizanin ku neviyên pêxember li wir çawa bê av hiştine, çawa ew li çolê hatine kuştin û çawa zilm dîtine. Dema ku mirovek bê kuştin, herwiha alemek tê kuştin. Kesî ku kuştina xwediyê wan gotinên wek, 'Em ewladê Kerbelayê ne. Guneh e, eyb e, zilm e. Ev cinayet e' biparêze û bine ser kursiyên parlamentoyê tu caran jî evîna mirovahiyê fahm nake.

## Öymen bû nijadperestê mehê

Teşebûsa DurDe (BêjeBes e), Cîgirê Serokê Giştî yê CHP'ê Onur Öymen, Serokê Giştî yê MHP'ê Devlet Bahçeli û Serokê YÖK'ê Yusuf Ziya Özcan, wek "nijadperêstên mehê" bijartin û xelata belgeyên takdîrê ya SS'ên Nazî, da wan.

Teşebûsa DurDe, hefta borî bi boneya "nijadperestên mehê" rave bike, li Qada Galatasarayê daxuyaniyek da çapameniyê. Mafparêz Eren Keskin, rêveberên Rêxistina DTP'ê yên bajar, têşebûsa Tevgera Azadî û Demokrasiyê beşdarî daxuyaniyê bûn. Komê dowizên ku li ser Xaça Naziyan hebû bi wêneyên Devlet Bahçeli, Onur Öymen û Yusuf Ziya Özcan bilind kirin.



Îrfan Amîda:

# “Helbesta kurdî ji ya cîhanê ne qelstir e”

*“Dema ku ez bala xwe didim helbesta kurdî ya niha, bi rastî ez gelekî serbilind im. Ez bibêjim ti ziman di navbera 10-15 salan de ewqasî bi pêş neketiye, wê ne dûrî rastiyê be.”*

**ÇİYA MAZÎ**

**Amed (Rûdaw)** - Îrfan Amîda di sala 1968’an li gundê Qesra Qelenderan ya bi ser Mêrdînê ve hatiye dinê. 2 salan di NÇM (Navenda Çanda Mezopotamya) de xebitiye û niha mamostetiyê dike. Heta niha 4 berhemên wî yên helbestan çap bûne. Herwiha ji helbestên M. Mungan (Balgîfa Mar) wergerek wî li gel Lal Laleş hatiye çapkirin.

***Tiştê ez zanim, hûn bi piranî helbestan dinivîsin. Beşeke din ya hunerê we eleqeder dike, an na?***

Mebesta we ji eleqederbûnê pêdaketin û mijûlbûn be, ez dikarim bêjim na. Lê devara ku peyv lê hebe, bi dizîka be jî, carinan rêya xwe pê dixim. Wekî muzîkê. Ji bilî wê bi gelek cûreyên wêjeyê dadikevim. Nikarim xwe ji çîrok û romanê jî vedizim.

***Hûn helbesta xwe aniha çawa dibînin, bi dilê we ye an na?***

Têkiliya helbestkar û helbestê têkiliyeke ku dişibe têkiliya mirov û jiyana mirov e. Divê mirov bi xwe re li hev be. Karibe têkiliyeke xurt bi xeletî û rastiyê xwe re, bi kêmasî û xurtiyên xwe re deyne. Jiyan û mirov guherbar e, ya jî pêywendiyeke wan ya di çarçoveya veguherîne de heye mirov dikare bibêje. Eger mercên heyî yên jiyanê bêne guhertin, bi xwe re mirov diguhere, eger mirov bê guhertin bi xwe re hewl dide mercên jiyanê yên heyî veguherîne. Ez dibêm qey ev yek ne dûrî rastiyê ye. Helbest û helbestkarî jî hinekî bi vê yekê ve girêdayî ye.

***Hûn niha pê qayil in?***

Mebesta we, ji derve de wekî lênerîna xwendevanekî, pê qayilbûn ya neqayilbûn be, ez dikarim ji dilê safî bêjim; ez pê qayil im.

***Lê têkiliya we û xwendevanan?***

Divê mirov beriya xwendevanan û bi wê ve girêdayî, behsa xwendevaniyê bike. Beriya hertiştî xwendevanî, ji ber sedemên diyar ku derbên giran li têkiliya di navbera kurdan û kurdî de xistine, qels e mixabin. Ev yek xwe di helbestê de bi giranî destnîşan dike. Xwendevanên ku ji peyvê nikarin derbasî hevoka nû/sentaksa nû bibin, ji xwe nikarin derbasî hêma û metaforên nûjen jî bibin. Ji loma jî xwendevan zû bi zû xwe li gorî veguherîn/nûjenbûyîna kurdî naguherîne. Helbet ev ne sûcê kurdan e, lê ev bêgunehî vê pirsgirêkê jî ji holê ranake. Di vê çarçoveyê de ez dikarim bibêjim ku rexneya herî zêde ya li helbesta min dibe, giranbûn/fêmnekirina hêma û metafor ya ji têkiliya nû ya di navbera peyvan de ye. Dîsa jî her ku diçe ez dibînim têkiliya xwendevanên kurd û kurdiya nûjen xurtir dibe. Ev yek xwe di helbestkar û nivîskarên nû de aşkere dike.

***Hûn helbesta kurdî ya niha û ya 15 sal berê bidin ber hev, gelo çiqas bi dilê we ye?***

15 sal berê kurdan ji nû ve – di çarçoveya wêjeyê de – têkilî bi kurdî re danîn. Dema ku ez bala xwe didim helbesta kurdî ya niha, bi rastî ez gelekî serbilind im. Ez bibêjim ti ziman di navbera 10-15 salan de ewqasî bi pêş neketiye, wê ne dûrî rastiyê be. Îro helbesta kurdî ji ya cîhanê ne gelekî qelstir e. Heger mirov rahêje helbestên Ehmed Huseynî, Kawa Nemir, Rênas Jiyan, Lal Leleş, Arjen Arî, Berken Bereh û gelek helbestkarên din, wê mirov têbigihîje bê çima divê em serbilind bin.

***Bi tevahî hûn çiqas têkildarî wêjeya kurdî nin, an hûn pêşketina wê çawa dibînin?***

Wekî wêjevanekî kurd û kurdî ez têkildar im helbet. Wekî xwendevanekî jî. Û ez dikarim bibêjim ku wêjeya kurdî bi pêşdikeve û wê bikeve.. Beriya bi çend salan me bi hêsanî pirtûkên kurdî yên ku çap dibûn, gişt dibihîstin, distendin û dixwendin. Lewra du-sê weşanxane hebûn. Lê niha em di ber re nema digihên. Her ku diçe weşanxane zêde dibin. Di warê wêjeyê de çar perçeyan jî ber bi hev ve tîne. Xwîn pê ve tê. Ev tişteke reel e. Li gel vê encama matematîkî mirov dikare bahsa pêşketina li gorî pîvanên wêjeyê jî bike. Di vê çarçoveyê de jî wêjeya kurdî bi pêş dikeve. Îro berhemên kurdî êdî ne tenê di çarçoveya zimên de têne nirxandin. Tenê bahsa xurtbûn ya jî qelsbûna zimên nayê kirin. Ji hêla felsefeya berhem û nivîskar, ji hêla pîvanên wêjeyê jî tê nirxandin..

***Wergerên helbestê ji zimanê din bo kurdî kêm in, herwiha di wergera helbestê kurdî ji bo zimanên din jî kêmasî heye, ji xwe pir kêm e.*** Çareseriya vê hinekî bi polîtîkayê ve girêdayî ye mixabin. Ne tenê wergera helbestê, werger bi giştî. Heger hin sazî û dezgeh piştgirî nedin, wêjeya kurdî wê zû bi zû wernegere zimanên dî. Ev di ser projeyan û lêxwedîderketinê re dimeşê mixabin. Divê ji hêla aborî ve destek hebe. Lê ji bilî vê rastiyê divê nivîskar ya jî kurdên dîasporayê jî hinekî rola xwe bilîzin di vî warî de.

***Êşek helbestê heye, heta hinek dibêjin “yên helbestê dinivîsînin dîn in” gelo ew êş û êşa kurdîtiyê çi tesîrê li we dike, êş mirovan dike helbestvan gelo?***

Êş û helbest nêzîkî hev in. Ji xwe êş û mirov jî nêzîkî hev in. Lê her kesên ku êşê dikişînin nabin helbestvan. Helbestvanî, ya jî hunermendî, bi vegotina hundurîn ve girêdayî ye. Deng e hinekî. Dengê mirov yê hundurîn bi çi awayî be, xwe bi wî awayî dide der.. Mirov bi çi rengî bibîne, bi wî rengî vedibêje. Dema mirov êşê bibîne, bibihîze, bipelîne, dengê hundur çi bêje ew e, bi vî awayî tê vegotin. Êşa kurdîtiyê êşeke giran e, şikestinek e. Ji bo kurdînivîsînê sedemek e lê bi serê xwe ne diyarkêr e. Heger ev şikestin ji holê rabe, ma wê helbestnivîsîna kurdî ji holê rabe? Na.

***Têkiliya we û helbesta beşên welêt yên din çawa ye? Gelo eger fermîbûnek çê bibe, wekî li Başûr, û li bakur jî beşê zankoyan û mafê perwerdehiyê çê bibe, wê tesîrek çawa li wêjeya kurdî bike?***

Îro jî hêdî hêdî ber bi hev ve tên. Teqez ev yek wê tesîreke xurt li helbesta kurdî, wêjeya kurdî bike. Lê beriya wê fermîbûnê jî divê qet nebe di warê zimên û hunerê de em li ser têgeha pankurdîzmê hinekî bifikirin.

# Di mûzîka kurdî de dengekî nû: Îssa Hassan



Müslüm Yücel

Bingeha mûzika kurdî deng e; dengekî xweş ber bi dil ve diherike û ev herikandin tê vê wateyê: Guh di nava dil de ye. Guh ew dengên ku bi rêya melodiyan tên, dişîne dil; tiştê ku ji çavan re dimîne, temaşekirin e; li ku bixwaze, li wir temaşe dike. Di vê navberê de mirov dikare bêje ku di hemû mûzîka kurdî de giraniya teatral balê dikişîne. Hunermend distire û strana xwe tîne ber çavan; enstruman jî di merheleyên dawîn de ketine nav vê teatrê. Mirov dikare wiha bîne ziman: Dengbêjên mizîka kurdî yên pêşî herwiha helbestvan in. Lê îro muzîkvanên cûrbecûr hene; ew jî bêyî ku bistirin, tenê li enstrûmanan dixin û berhemên xweş derdixin holê. Kesek ji wan, dibe ku yê herî girîng be, Îssa Hassan e.

Îssa Hassan di salên 70’an de hatiya dinyayê; ji kurdên Lubnanê ye. mûzîkvan û kompozîtor e… Di derbarê jiyan û pexşana wî de ewqas zanyarî bes e. Mûzîka ku ew çêdike hêj zêde bal nekişandiye. Ji ber ku mûzîkeke nû çêdike. Ew rîtmên kurdî tevlî jazza Ewrûpî û ya Afrîkî ya ku em dinasin, dike. Ew bi vî awayî formeke nû ava dike. Ev yekem car e ku mûzîka kurdî ji dengan derdixe û dike nav forma mûzîka enstrumanan. Tembûra ku li deştan dihat guhdarkirin, bi Îssa re li Ewrûpayê ji xwe re guhdarvanên nû dibîne. Kesê ku dixwaze pê re dikeve derya hestan û hinek dikevin ya ramanan û hinek jî dikevin dîlana reqsê.

Jazz, mûzîka gelê Afrîkiyan a derveyê olî ye. Dîrokeke wê ya cuda heye; rayên vê mûzîkê ew reşikên koledar ên ku ji Afrîkayê dîaniyan Ewrûpayê ne. Jazz mînakek yekem e ku wek mûzîka gelerî ketibe asta mûzîka hunerî. Flamenko, rojhilatê Spanyayê ye. Wek deltayê ye; di nav vê mûzîkê de bandora mûzîka erebî, dansê çingeneyan û hinek jî jazz heye. Herwiha muzîkeke balkêş e ku li derveyê birc û kela, li kolanan deng dida. Îssa li vir derdikeve holê. Ew Endulus û çingeneyan, Afrîkiyên kole û kesên ku li cihê xwe dijîn lê ji jiyana xwe ne razî ne, hemûyan di tembûra xwe de tîne cem hev. Tembûra Îssa senteza van herdu mûzîkan e. Dema ku mirov li jiyana wî dinêre, xuya dike ku ew bi mûzîka xwe ti cudahiyek dernaxe holê. Malbata wî sirgûnê Lubnanê bûne, paşê di pexşana wî de em dibînin ku li Fransa û bajarê lê dijî. Li vî bajarî şevên havînê navdar in. Li her kolanan konser tên li dar xistin. Xort û keçên ciwan li ber çem dicivin, di destên wan de enstrûman û disitrin. Mirov dikare hemû dengên mûzîka Rojava li kolanên vî bajarî guhdar bike. Îssa, mûzîka Rojava li vir nas dike. Û di dawîyê de mûzîka Rojava, mûzîkên Spanya, ya herêmî û koça kurdan digîjin hevdu.

Îssa, tenê van herdu çandan, Flamenko ve Jazzê bi rîtmên kurdî ve girênade. Herwiha ew hinek dengên Rojhilat wek dengên hundirî bikartîne. Wek tê zanîn rayên tembûrê farisî ne; ji du perçeyan (bombey) pêk tê. Destiyê wê ji hestî ye, aliyê din darîn e. Hestî û dar. Rîtma jiyan û mirinê tîne cem hev. Rîtmên pêşerojê bi rêya dar derbasî hestî dibin û em wiha dikarin bibihîsin. Bi tezeneyekî hesînî mirov li têlan dide; gewdeya wê ji çerm e û jiyanê vedişêre. Îssa bi zanatî sê caran lê dixe; di lêxistina yekem de em tenê deng dibihîsin; rîtm tê û dikeve guhê mirov; navê wê tune. Di lêxistina duyem de em jazzê dibihîsin; dengekî hundirî tê guhê mirov. Tevgerekî çêdibe, dema dans û reqsê ye. Ev jî flamenko ye. Mûzîka Îssa ku ji sê amûrên xwezayî pêk tê, tahmek xweş dide me.

Ev mûzîka Îssa ye; ji bilî wî ne kesê çêkiriye û ne jî kes çêdike. Amûra bingehîn di vir de wek me berê jî got, tembûr e. Tembûr du tişt dide Îssa û guhdarvanan: Hunermend dikare bi dengên cuda meqamê bide me, em jî dema ku bixwazin dikarin wan dengên cuda bibihîsin û wan ji hev cihê bikin.

# Sezen bo Ceylanê stran çêkir



**Köln (Rûdaw)** - Sezen Aksu, bo Ceylan Önkola ku li gundê Pêkûy a Licê bi hewanê jiyana xwe ji dest dabû, stranek nivîsand.

Ev agahî ji aliyê nivîskarê muzîkê Naim Dilmener ve hatiye ragihandin. Nivîskarê Muzîkê Naim Dilmener, bo kovara mehaneya Milliyet Sanat ku di 29’ê Sermawezê de wê derkeve, nûçeyê bi van rêzan radigihîne: “Ez û Sezen, em bi telefonê axifîn. Hinek hal û xatir, hinek esprî û bi piranî kena hurehur û ji nişkeva got, ‘Min duhî şev bo Ceylanê stranek nivîsand. Ez dixwazim ji we re bixwînim.’ Paşê xwend. ‘Li kêleka min a rast ji serî heta binî Mezopotamya, kêleka çep lawijên Rûmelî diteqin…’ Wek mixkiri li cihê xwe cemidîm! Laşê parçekirî yê Ceylanê dilê me hemûyan peramparçe kir. Dilê Sezen Aksu hemû mirovên cihanê davêje. Rewşa herî tund a vê dinyayê gule û bombe, tenê Sezen dikarîbû ewqas bi xemgînî û însanî bîne ziman.”


(Wêne: Rûdaw)

*Sêwekarê kurd Berham Haco li Münsterê di atolyeya xwe de heta îro nêzîkî 2 hezar tabloyan çêkiriye; tevlî bi sedan pêşengehan bûye. Li Almanya di nav pisporên hunerê de gelek tê naskirin û wek ekspresiyonistê nû tê bi navkirin. "Ez bê fikir dest bi resman dikim, ew roj mizaca min çawa be wêne jî wisa çêdibe û di hemû wêneyan de sûreta min heye" Ew bi wêneyên ku çêdike debara xwe dike."*

# Di hemû tabloyan de sûretê min heye

MEHMET SEBATLI


*Behram Haco li atolyeya xwe, li ber tabloya ku hîn li ser dixebite...* (Wêne: Rûdaw)

**Münster (Rûdaw)** - Behram Haco şêwakerekî xwedî stila taybet û di nav civaka hunermendan de kesekî navdar e. Ne diyar e ku kurd wî çiqas nasdikin, lê li Almanya û Ewrûpayê di nav malbata hunera xweşik de baş tê naskirin. Ev zêde yî 20 sal in ku Haco şêwekariyê dike, heta îro wî 2 hezar tablo nigarkirine, bi sedan pêşengeh li dar xistine. Taybetmendiyeke wî heye ku Haco ev 20 sal in dikare bi resman debara xwe bike. Li ser hunera wî ji aliyê krîtîkerên alman û pisporên şêwekariyê ve gelek gotar û nirxandinên balkêş hatine nivîsandin. Mînak Prof. Dr. Christoph Miething, Prof. Dr. Walter Schurian berhemên wî wek "Ekspersiyonîzma nû" binav dikin. Çima ya nû?

Bersiva vê Haco bi xwe dide me: "Li Almanya di navbera herdu şerên cihanê de di şêwekariyê de stileke nû peyda bû. Kirschener, Otto Müller û Peschstein vê ekolê bipêşxistin. Van kesan di tabloyên xwe de giranî didan mirovan û hestên wan derdixistin holê. Lê dema ku şerê cihanê yê duyem her derê Ewrûpayê dagirkir, weke gelek nivîskar, hunermand û feylezofan ev grûp jî hat tewanbarkirin. Naziyan jî bo wan digotin ku ew di bin bandora cihuyan de mane. Ji ber vê çendê êdî ev ekol li Almanya qels bû..."

Li Münsterê nêzîkî Rawestagaha Navendî taxa hunermandan heye. Ji her beşê hunerê, bi dehan hunermand li vir di atolyeyên xwe de berhemên xwe diafirînin. Mûzîsyen, şêwekar, hesinkar, balevan ûhwd. Haco jî di atolyeya xwe ya 85 metreqare de her roj dixebite. Bi gotina wî, "Kevir jî bibarin, nexweş û mirî jî hebin ez her roj têm vira." Li atolyeya wî li ser maseyekî gelek mezin bi sedan reng hene, firçe hene, li dîwaran bi dehan tabloyên nîvco û yên temamkirî daleqandî ne. Herwiha li ber her dîwarî, di bin her pencereyê de gelek tabloyên û biçûk û mezin hene.

Em gotinê dibin ser espersyonîzme, naveroka resmên wî. "Ez bê pîlan, bê fikir, bê model û bê armanc diresminim. Dema ku ez ji mal têm atolyeyê di serê min de ji bo ew roj tu projeyek tune. Vala têm, lê ji vir tijî derdikevim."

Xuya ye ku ev mijar hestên wî yên kûr derdixe holê; radibe û diçe ber dolabê. Diyar e ku ji meyê alîkariyê dixwaze. Jî şereba spî du qedehan dadigre. "Ez bê ku vexwim nikarim dest bi kar bikim." Û behsa karên xwe yê rojane dike. "Ez li erdê dixebitim. Tabloya spî li erdê radixim û bê model, bê fikir, bê plan wan rengên li ser masê ne, destê min bigihî kîjan ez wê radigrim û dirijînim ser tabloyê, dû re yeke din û yeka din jî. Paşê van rengan tevlî hev dikim, dibînim ku gav bi gav ew di çavên min de şiklan digrin. Di navbera min û rengan de diyalog çêdibin. Ew li ser min bandor çêdikin. Ez jî bi wan dilizim."

Ji wan rengan êdî weke mirov, şeklên hunerî derdikevin holê. Dem dema rakirina tabloyê ye, tabloyê radike û bi dîwar ve dadileqîne.

"Ez li wan zêde dikim, ew xwe kêm dibînin. Dema ku ez tabloyê diecibînim, ew kêmasiyeke nîşanê min dide. Di navbera min û tabloyan de têkoşîn derdikeve. Tiştên nû diceribînim, xirab dikim, ji nû ve tişteke din çêdikim. Wiha carna ez, carna jî tablo biserdikeve."

Di wê demê de ew tabloyan nîşanê me dide. Tabloyên qedandî. Di hemûyan de seriyê mirovan hene, laşên cûda, kesên di nav reşahiyê de, tarîtî, însanên devgirtî, jinên matmayî, mêrên tazî û çaq vekirî û li benda jinê sekinî ye...

Em dipirsin ka di 20 salên şêwekariyê de wî çi resmandiye? Berê çi derdixist pêş, niha çi? Radibe katalogek nîşanê me dide. Di vê katalogê de resmên ku beriya salên 1991'an çêkirine, tomarkiriye. "Di van resman de gelek gund hene, kesên bi cilên kurdî hene, jiyana kurdan heye, serhildan, berxwedan, mirin û işkence heye..."

Lê paşê? Di salên dawîn de çi guhertin pê re çêbûne? Ew beriya ku bersivê bide, dîsa çend katalogên din nîşanê me dide. Di van katalogan de resmên ku di bi awirên pêşî mirov nikare şîrove bikin, hene. Gelek jî wan jî rengên reş û spî pêktên û di hemûyan de mirov hene. An bi tenê ye û difikire, an bi jin û mêrekî bi hev re ne...

"Lê tişta ku nayê guhertin ev e: Ez di hemû tabloyan de jî xwe dest bê dikim. Rûyên wan mêran bêhtir dişibin rûyê min. Ew jin jî dişibin jina min."

Wek têkiliya navbera Salvador Dali û hevjîna wî Gala...Em meraq dikin ka gelo ew tu caran bi modelan resman çêkiriye an na?

"Naxêr" dibêje. "Ez li gor rewşa xweya derûnî van tabloyan çêdikim. Roja ku ez têm vira, moralê min, kêfa min çawa be ew roj berhem li gor wê diafire."

Em li tabloyan û wêneyên katalogan mêze dikin. Ew firçeyên du rûyên mirovan de, devên girtî û caçên bi şewk bala me dikişînin. Ew didomîne: "Ev e espersyonîzm. Derxistina hestên nava însanan, resmandina rûyên wan ê veşartî..."

Di dawiya axaftina xwe de Behram Haco dibêje ku ew ji bilî şêwekariyê tu kar nake û ji dewletê jî tu pereyan nastîne. "Ez ji resmên xwe debara mala xwe dikim û rewşa min a aborî jî gelek baş e."

Gelo bi resman çawa debar dibe? Ew meraqa me wiha dibersivîne. "Gelek muşteriyên min ên dewlemend hene, banka, şirket, xwediyên kolleksiyonan ji min resman dikirin; herwiha ji pêşengehan jî ez qezenc dikim."

Behram Haco di sala 1952'an de li gundê Dêrûnê bi ser Qamişloyê hatiya dinyayê. Wek ji paşnavê wî jî diyar e, ew ji malbata Hacoyan e. Jiber vê ji pexşana wî bi xwendin, sirgûnî, rev, dîsa xwendin û hunerê derbas bûye. Cara yekem wî Arkeolojî xwendiye, paşê Padegojî û di dawî de jî li Münsterê Akademiya Hunerên Xweşik kuta kiriye. Du car zewiciye, jî du jinan car zarokên wî hene, û li Münsterê dijî.


*Bahram Haco, jin, 2004, 140x120 cm*




Xewna Günay Darıcı ciwakek kurd ya modern û tolerant e (Wêne: Rûdaw)

## Pedagog Günay Darıcı:

# Gelek mêr naxwazin ku jin bi întegrasyonê xwe nas bikin!

*"Min heta niha nedîtine ku keçên kurd eroînê dikişînin, lê bêtir haşîşê dikişînin; hem jî pê kêf dikin xwedêgiravî. Bi taybetî keçên ku li vir mezin dibin, niha ev yek gelek ber çavan dikeve mixabin. Hejmara wan her ku diçe zêdetir dibe."*

**EVDÎLE KOÇER**

**Berlin (Rûdaw)** - Günay Darıcı jineke kurd e. Li Qersê hatiye dinyayê. û li Zaningeha Erziromê felsefe xwendiye. Ji ber meseleyên siyasî gelek caran hatiye girtin. Günay niha li Berlinê dijî û weke sosyalpedagog di nav komeleyên kurd û almanan de bi civaka kurd ve mijûl e; bi jin û ciwanan re li ser pirsgirêkên wan kar dike. Gulay Darici ji Rûdawê re behsa pirsgirêkên jin û ciwanên kurd kir.

***Birêz Gülay Darici, gelo jinên kurd yên li Almanyayê dikarin nasnameya xwe ya jinatiyê heta dawiyê bijîn, an weke li Kurdistanê li vir jî di bin hukmê mêran de ne?***

Ev mesele piçekî tevlihev e. Jinên kurd ên ku piçekî siyasî ne xwe li vir azadtir his dikin, bêtir pêş ketine, desthilatdariya wan helbet bêtir e. Di meseleyên integrasyonê de jî - ev gotina integrasyonê jî bela ye, ez naxwazim behsa integrasyonê bikim! - jinên kurd bêtir pêşketî ne, ji mêran bêtir dikarin xwe integreyî civaka vira bikin. Bêtir ziman fêr dibin, zûtir tişta fêm dikin, li ser xwe disekinin...

***Gelo sedema ku mêrên kurd nikarin wekî jinan xwe integre bikin çi ye li gorî te?***

Ez bawer im ew jî hinekî di nav kultûra me de heye. Mesele dema ku mêrek were Almanyayê û bêje "ez almanî nizanim", ev yek jê re zehmet e, kompleks pê re çêdibe. Tê dibêje, "ê xoce, ez li welatê xwe wiha bûm, wisa mezin bûm..." Lê li vir ji nizane xwe bi almanî îfade bike, loma nikare bi reheti ji derdora xwe re jî bibêje, "Ich gehe in die Schule..." Ev jî nefsa wî ya mezin re zehmet e.

***Dema mêr peyva "Întegrasyon" seh dikin, çi his dikin?***

Niha dema em behsa întegrasyonê dikin hin mêr dibêjin qey wê jinê wan dev ji wan berde. Fêm dikin ku li vê civakê mafê jinan jî heye, piçekî ditirsin, ji hukmê xwe ditirsin. Hinek jî dibêjin mafê jinan bêtir e, bi integrasyonê re jin serê xwe hildidin, li mafê xwe digerin. Gelek mêr hene naxwazin ku jina wan bi rêya integrasyonê bêtir xwe nas bike û li ser xwe bisekine. Di nav wan de kesên ku bi siyasetê jî mijûl dibin pir in. Bi nîfşa çaran ya li Almanyayê helbet hinek tişt hatine guhertin, lê ne ewqas jî pir...

***Em dizanin ku tu bi problemên jinên kurd ên lezbiyen re jî mijûl î. Gelo jinên kurd ên nêrbaz (homoseksûel) li Berlinê xwe wekî kurd didin nasandin?***

Dizanî ev mesele piçekî tabû ne. Di nav kurdan de zêde tabû ne. Eger bêje ez nêrbaz im, malbatê wan qebûl nakin, loma ji malbatê xwe dûr dikevin, naçin cem malbatên xwe. Xwe didine naskirin carcaran, dibêjin koka me kurd e. Lê dûrî kultura xwe diçin, ji ber ku kultura wan vê tiştê qebûl nake. Berê komeke nêrbaz dixwestin ku bi me re rûnin, civîn çêkin, lê me nedikarî ku em zûka vê yekê bipejirînin. Hingê bi min bi xwe re jî li dijî vê yekê pêşhelwest hebû. Ez sê hefteyan li ser fikirim heta me kanî bi hev re rûnin. Ev tabûyeke mezin e, jî bo lezbiyenan û nêrmokan jî.

***Herî zêde bi kîjan pirsgirêkên ciwanan re rû bi rû dimînî?***

Niha ez carina alîkariya malbatên kurdan dikim. Mixabin hin ciwanên kurd eroin hildidin, haşiş dikişînin, xirabiyan dikin.

***Di nav van ciwanan de keçên kurd jî hene?***

Min heta niha nedîtine ku keçên kurd eroînê dikişînin, lê bêtir haşîşê dikişînin; hem jî pê kêf dikin xwedêgiravî. Bi taybetî keçên ku li vir mezin dibin niha ev yek gelek ber çavan dikeve mixabin. Hejmara wan çiqas roj diçe zêdetir dibe...

***Gelo sedema vê çi ye li gorî te?***

Sedema herî mezin malbat in. Di vir de malbat zeîf in. Di dema gihandina zarokan de malbat li ser nasekinin, giringiyê nadin ku roj bi roj zarok mezin dibin. Helbet ji vê re jî berpirsyarî divê. Li hêla din jî gelek malbat ji hev cûda bûne. Zarokên wan jî li erdê diminin. Dema ji hev cûda dibin êdî berpirsyariya zarokên xwe ji bîr dikin. Bêyî jî hev re bibêjin 'bi xatirê te', dev ji hev, dev ji zarokan berdidin. Peywira xwe ya dêbavtiyê jî bîr dikin, piştî ku dev ji hev berdidin. Zarok jî di vê navberê de fêrî xirabiyan dibin. Dema ji hev vediqetin, nabêjin yaw ev zarokên me ne, em mecbûrî wan in, belê mimkûn e ku careke din neyêne cem hev, lê mecbûr in ku ji bo zarokên xwe disa bi hev bişêwirin. Lê vê yekê nakin. Hingê zarok jî diçine derve.

***Ev devjihevberdana malbatên kurdan li Almanyayê di asteke normal de ye, an hejmara wan bilind e li gorî miletên din?***

Li gorî min gelek kes li vir dev ji hev berdidin. Sedem jî ev e ku gelek malbat ji law û keçên xwe re bûk û zavayan peyda dikin, dixwazin, tînin vira. Lê piştî demeke din li hev nakin. Malbatê keç û kuran dixwazin ku malbat xira nebe, lê kes nikare pêşiya vê bigire. Hejmara veqetandina li cem kurdan zêde xuya dike, lê ji ber ku keç û xort berê zewacê nikarin bi tena serê bijîn...

***Nikarin derkevin derve...***

Belê nikarin derkevin derve û bi tena serê xwe bijîn.

***Banga te li jinên kurd ên li Ewropayê çi ye?***

Ez dixwazim ku jinên kurd pêş bikevin, pir bixwînin. Divê pişeyeke wan, kareke wan hebe. Jiyan ne tenê di mal de ye. Helbet wê malbata wan jî, zarokên wan jî hebin. Helbet bi mêrê xwe re jî jiyana hevpar xweş e. Lê ew çiqas pêşketî bin, dikarin ew çend zarokên wan jî pêş bikevin. Bila agahiya wan di derbarê civaka vir de jî hebe, bila guhê wan jî her tiştî re vekirî be. Hinek jî dibêjin azadî xwe şaş dikin...

***Di ku de xwe şaş dikin?***

Azadî ne ew e ku meriv her roj derkeve derve û bi tena serê xwe bijî...

***Gelo keçên kurdan jî wekî lawan dikarin bi dilekî rihet ji dêbavê xwe re bibêjin ku ew îro diçin diskotekê?***

Nikarin bêjin. Ez bawer im sedî nodûneh jî nikarin bêjin. Sedema vê jî ev e ku dibêjin 'ji kur re, law re her tişt serbest e, lê ji keç re qedexe ye.' Ev jî dibe sedem ku malbateke rind dernakeve holê.

***Dema keçeke kurd dil berde xorteki, wekî kurekî kurd dikare bi malbata xwe re parve bike û bêje?***

Bi diya xwe re bêtir dikarin dibêjin, lê bav na. Mixabin civaka kurd di van meseleyan de gelekî hişk e, civakeke gundî ye. Nikare zûka qalikê xwe bişkêne. Ev yek jî helbet bi asta perwerdeyê ya malbatê ve grêdayî ye! Hin malbat hene fêm dikin, hin malbat jî qet.

***Gotina te ya dawî çi ye?***

Ez dixwazim ku kurd bi nasnameya xwe ya kurdîtiyê ve li her derî wekî însanên modern bijîn. Mirov dikare bi vê modernîtiyê ve bibe parçeyek ji vê civaka Ewrûpayê, helbet wekî kurd. Lê divê em xwe jî pêş bixin, çand û hunera xwe bilind bikin. Divê em ne wekî kurdên hov, lê wekî kesên pêşketî li her derê dinyayê bijîn. Heke em vê yekê pêk bînin, hingê emê bi ser jî bikevin.

# Jin bi navê xweşewitandinê têne şewitandin

**SERBAZ SÎYAMEND/ PAKÎSTAN BÎLEN**

**Hewler (Rûdaw)** - Li Herêma Kurdistanê, pirsgirêka jinê yek ji pirsgirêkên sereke ye. Di navbera salên 1991 û 2009'an de, ji ber pirsgirêkên civakî, aborî, xizanî, gerdişî, namûs û zewaca bi zorê hezar û 440 jinan teşebûsî xwekuştinê kir, an jî hatine kuştin. 5 hezar û 186 jinan jî xwe şewitandin. Her çiqasî ji bo çareseriya pirsgirêkê hewldan hebin jî, lê hejmara teşebûsa xwekuştnî û şewtandinê zêde dibe.

Li gorî statîstîkên jî aliyê Rêxistina Tendirustiyê ya Cîhanê (WHO) ve hatiye amadekirin, rêjeya xwekuştina jinan a li cîhanê ber bi zêdebûnê ve diçe. Li gorî lêkolînan li Başûrê Kurdistanê jî di navbera salên 1991 û îlona 2009'an de ji ber sedemên curbicur 5 hezar û 186 jinan xwe şewitandine. Tê gotin ku jî bilî van hejmarên hatine dayin, gelek jinên din jî teşebûsî intixarê kirine, lê ji ber tirsê nabêjin, an jî veşartî mane. Herwiha gelek jinên ku xwekuştin e û jiyana xwe ji dest dane ku nayên zanîn jî hene. Di lêkolînên ku hatine kirin de, nayê gotin ka di encama van teşebûsan de çend jinan jiyana xwe ji dest dane. Li gorî statîstîkên hatine dayin, ji sala 1991'an heta îlona 2009'an her çiqasî di nava salan de hinek guhertin çêbibin jî, hejmara xwe şewtandinê sal bi sal zêde bûye. Herî zêde jî di sala 2004'an de teşebûsên xwekuştinê çêbûne û di vê salê de 831 jinan teşebûsî xwekuştinê kiriye. Li gorî agahiyên ji hela Bankeya Danûstandina Agahiyan (Înformation Exchange Bank) a girêdayî Balyozxaneya Amerîkayê ya Bexdayê, di 8 mehên sala 2009'an de 367 jinên di navbera temenê 15-44 saliyê de bi rêya şewitandinê xwestine dawiyê li jiyana xwe bînin. Ji kesên xwe şewitandine heta niha 180 jinan jiyana xwe ji dest dane. Li gorî agahiyan piraniya kesên li jiyanê mane ji bi pirsgirêkên tenduristiyê dijîn.



Pablo Picasso - Sê jin - 1908

**'Di sala 2009'an de hejmar zêdetir bû'**

Li gorî lêkolîna hatiye kirin, ji sala 1991'an heta îlona 2009'an, li gorî salan hejmara xwe şewtandinê wiha ye: 1991: 36 jin, 1992: 97 jin, 1993: 128 jin, 1994: 113 jin, 1995: 153 jin, 1996: 216 jin, 1997: 158 jin, 1998: 377 jin, 1999: 349 jin, 2000: 202 jin, 2001: 236 jin, 2002: 303 jin, 2003: 325 jin, 2004: 831 jin, ji van 200 jinan jiyana xwe ji dest dane. Di sala 2005: 300 jin, 2006: 335 jin, 2007: 318 jin, 2008: 333 jin û di îlona 2009 jî 376 jinan teşebusî xweşewitandinê kiriye. Di lêkolînan de jî ber ku gelek teşebûsên xwekuştin û mirinên di encama van de nayên tespît kirin, tê texmîn kirin ku hejmar jî van daneyan zêdetir be. Li gorî agahiyan li bajêrê Hewlêr, Silêmanî û Duhokê teşebûsên xwekuştinê zêdetir bi riya xeniqandin, derman xwarin, destdirêjiya zayendî û çekan pêk tê. Di daneyan de tê diyar kirin ku herî zêde teşebûsa xwekuştinê di sala 2009'an ku hêj bi dawî nebûye, pêk hat. Ev yek ji komele û derdorên parazvanên mafên mirovan û jinan dixe nav fikaran.



Özgür Sarier (Wêne: Rûdaw)

# "Li karkerên kurd digerim"

*Özgür Sarıer di warê kar de xwediyê pexşaneke mînak e. Sê sal berê wî bi pakijkirina du tuwaletan dest bi kar kiribû, niha bi mezintirîn firmaya inşaatê re peyman çêdike. Ji Kielê heta Münchenê niha em paqijîyê dikin. Dixwaze bi karkerên kurd re bixebite û salonên ku kurd festival û mihrîcanan li dar dixin, bê pere paqij bike.*

**Hattingen (Rûdaw)** - Kurdên li Almanya dijîn di salên dawîn de di warê aboriyê û kar de gelek pêşketinan bi dest dixin. Wek tê zanîn kurd zêdetir bi karên donerê re û produksiyona wî re mijûl in. Lê ji bilî vî karî gelek dezgehên din ên kar ji hene ku kurd dikin û bi serdikevin. Mînak karê ku Özgür Sarıerê 25 salî dike: Paqijî.

Özgür Sarıer sê sal berê dema ku ji bo termîna xwe diçe Arbeitsamtê û bi karmenda ku hertim bi karê wî re mijûl e diaxife, ne di derbarê pêşerojê de û ne ji di derbarê karekî ku dixwaze bike de, ti fikrek di serê wî de tunebûye. Lê di axaftina bi wê karmenda Arbeitsamtê re şewqeke ronî ji bo wî pêdikeve. "Wê ji min re hertim digot ku tu ciwan î, enerjîk î û almanî baş dizanî, çima ji xwe re li karekî nagerî? Helwesta wê ne ew bû ku wek hemû karmendên Arbeitsamtê li kesan dikin, da ku ew ji xwe re karekî bibînin û êdî ji kîsê dewletê debara xwe nekin. Wê bi rastî ji dixwest ku ez ji xwe re karekî bibînim."

Divê Sarıer karekî bê mesref, karekî ku jê re diploma nedivê bibîne. Fikrê paqijiyê ji wê jina karmend distîne û diçe bi 29 euroyan destûra kar distîne (Gewerbe), li ser navê xwe reklaman amade dike, mal bi mal, dukan bi dukan belav dike. Navnîşana cihê kar, mala wî ye. Pistre li rijnameya herêmî dinêre û banga karekî dibîne, diçe cem xwediyê Bäckerei (firin) li Hattingenê. Li wir du tuwalet hene, divê werin paqijkirin. Sarıer bi serê xwe her roj wan herdi tuwaletan paqij dike. "Divê min di saet 09:00'an de paqij bikira, lê ez di saet 5'ê sibehê de diçûm. Ez bi heyecan bûm, min baş paqij dikir da ku mêrik ji karê min razî bimîne. Alman di kar de hertim disîplînê, paqijiyê û rastiyê dixwazin. Dema tu karê xwe erzan û paqij bikî, ew kar didome, di kar de hemû deriyên li pêşiya te hebin, vedibin."

Di navberê re sê meh derbas dibin; xwediyê Bäckerei ji karê Sarıer razî ye. Karê paqijkirina dukaneke din dide Sarıer. "Min karê duyem ji girt, dîsa baş xebitim û êdî ez giham asta ku ez bi xwediyê kar re re karibim bazarê bikim."

Paşê, li dû hev gelek kar dikevin destê wî. Demekî rawestegehên otobus û tramvayan ên li Hattingenê paqij dike, li Essenê karê paqijkirina Uniklinîkê distîne û hwd... Li Bremenê firmeya ku li seranserê Almanya bi paqijkirina fitnesstudio re mijûl e, bi Sarıer re peyman çêdikin û niha ew tevî 15 karkarên xwe ji bakurê Almanyayê Kielê ta başûrê Almanyayê Münchenê li gelek bajaran vî karî dike. Herwiha li Bochumê paqijkirina Autohausa Hundai...Niha bi mezintirîn firmaya inşaatê Köster re peyman çêdike û dest bi paqijkirina inşaatan a hundir û derve dike.

Ew dixwaze li cem wî karkerên kurd bixebitin. "Dema ku ez li bajarekî ihaleya karekî werdigrim, telefonê komeleyên kurd ên li wê bajarê dikim da ku kesên ku li kar digerin nas dikin an na. Herwiha projeyeka min a din heye, ez dixwazim ew cihên ku kurd festval, mihrîcan û şevên mezin pîroz dikin, bê pere, wek alîkariya welatparêziyê paqij bikim."




KOMKAR'a Berlînê dibe 35 salî

# "Yekem ahenga Newrozê li Ewrûpayê me pîroz kir"

*Yek ji damzirênerên Komleya Kurdistanê ya Çand û Alîkariyê Dr. Şükrü Güler dibêje ku cejna Newrozê li Ewrûpayê wan di sala 1974'an de li Berlînê pîroz kirine. Di pîrozbahiya yekem de Şivan Perwerê ku nû ji welat hatibû, çend stran gotin. Ev komele niha bi armanca integrasyonê ciwanên kurd perwerde dike.*



Komeke govendê di pîrozbahiya Newrozê de ku ji aliyê Komkarê hatiya lidarxistin

**Berlin (Rûdaw)** - Ew li dora bîst salî bû dema ji bo xwendinê hat Almanyayê. Îro Dr. Şükrü Güler 58 salî ye û wek doktorê giştî li Berlînê, li taxa Kreuzbergê dixebite. Niha bêhnvedana wî ya firavînê ye û ew bi dosyayên di dest de di odeyên KOMKAR'ê de diçe û tê. Güler yek ji damzirênerên "Kurdistan Kultur- und Hilfsverein" (Komleya Kurdistanê ya Çand û Alîkariyê) û serokê wê ye ji. Kurdê 58 salî, sala damezirandina komleyê tîne bîra xwe, ango sala 1974'an: "Me li li Ewrûpayê yekemîn ahenga Newrozê li Berlînê pîroz kir. Şivan Perwer nû ji welêt hatibû û ligel wî dora 2500 kes beşdarî ahenga me bûn." Ji ber ku hingî komeke folklorê li Berlînê peyda nedibû, Güler û hevalên xwe komeke folklorê ji bajarekî din peyda kir. Ew tîne bîra xwe û dibêje: "Hingî me ji xwe re got, ev çanda me ye, zimanê me ye, hertişt ê me ye, gerek em xwedî li wan derkevin."

Û bi vî awayî hingî komeleyeke kurdî hat damezirandin, ku heta îro xebata xwe didomîne. Komeleya Kurdistanê ya Çand û Alîkariyê îro bûye navendek giring ji bo li dora 70.000 kurdên niştecihên Berlînê. Lê kêm kes komeleyê bi vî navî nas dikin, komele bêtir bi navê "Komkar"ê hatiye naskirin.

Ji bilî agahî û şêwir û kursên zimên komeleya kurdî herwiha projeyên ji bo jinan û projeyeke ji bo vegerandina ciwanên tawanbar nav civakê pêk tîne. Ew bexçeyekî zarokan ji bi rê ve dibe.. Ev bîst sal in bexçeyê zarokan ê bi navê "Hêlîn" e ku zarokên alman û kurd bi hevre bi di zimanan perwerde dike. Endamê Komeleya Kurdistanê ya Çand û Alîkariyê Ünal Yardımcı diyar dike ku bê giraniya xebata komeleyê li kû derê ye: "Em bi taybetî projeyan ji bo zarok û ciwanan pêk tînin, da ku em alîkariya wan bikin ku di civaka alman de întegre bibin. Armanca me ew e ku ew xwe li almanyayê rehet hest bikin. Lê ev nayê wê wateyê ku ew asîmîle bibin."

Ünal Yardımcı 54 salî ye û ev 28 sal in ku li Almanyayê dijî. Li gorî agahiyên komeleyê 40 endamên wê yên çalak hene. Piraniya wan ji mêj ve di nava xebata komeleyê de ne. Yardımcı dibêje ku li komeleyê kêşeya ciwanan heye, "lê komele tim li peywendiya bi ciwanan re digere". Li Berlînê çar avahiyên KOMKAR'ê hene, li her deverê derfetên derbasbûna înternêtê hene. Ünal Yardımcı diyar dike ku ciwanên kurd dikarin li van deveran herweha bi awayine din ji dema xwe ya vala derbas bikin: "Em alîkariya wan dikin. Ev ji bo me giring e. Ciwan tên ahengên Newrozê, bi hevre bi kurdî diaxivin, ev gelekî giring e."

Lê Yardımcı li xwe mûkir tê ku pirsgirêgeke nifşan heye. Serokê wî Dr. Şükrü Güler hewl dide ku vê pirsgirêkê bi vî awayî şîrove bike: "Dema em hatin Almanyayê, em perîşan bûn, ji bo me hertişt qedexe bû. Em hingî ji bo azadiyê hatin vî welatî. Ciwanên îro azad in û tiştê ku me dît, wan neditiye. Rewşa wan a aborî baş e û li pêşiya wan gelek rê vekirî ne." Güler, ku sala buhurî ji bo xebata bi dehên salan ji bo alîkarî û intergatsyona Kurdên li Berlînê bi xelata dewleta almanî a Almanyayê hat xelatkirin, dixwaze bi çalakiyên integratsyonê ciwanên kurd nêzîkî xwe bike: "Ciwanên me ne tam kurd in, ne ji tam alman in. Em dixwazin ku ew nasnameya xwe xurt bikin û bi vî awayî di nav civaka alman de întegre bibin. Jiber ku bêyî integratsyonê jiyan gelek dijwar e."

Ünal Yardımcı pêşeroja Kurdistan Kultur- und Hilfsverein li Berlînê di xebata hevbeş a çanda kurdî û integratsyonê de dibîne. Jiber ku bi xêra piştevaniya aborî ji aliyê dewletê ve ji bo çalakiyên integratsyonê komeleya kurdî dikare di van demên aboriya xerab de çalakiyên kurdî pêk bîne. Ünal Yardımcı di wê baweriyê de ye ku herdu xebat ne li dijî hev in. "Ew hevûdu temam dikin", Yardımcı dibêje û sirê serketina 35 salane ya komeleya xwe diyar dike, ku di van 35 salan de bi sedan komeleyên kurdî hatin avakirin û dîsa têkçûn: "Di nerîna min de, rastiya ku KOMKAR'ê piştî 35 salan hîn ji li ser lingan maye, ew e ku em di herdu waran de çalak bûn." (www.kkh-ev.de)




# Li Enstîtuya Kölnê semînerên kurdolojiyê

**Köln** - Li Almanyayê, bi hevkariya Enstîtuya Kurdî ya Almanyayê û Yekitiya Xwendekarên Kurdistan (YXK) rêzek semînerên li ser zimanê kurdî tên li dar xistin. Li gor agahiyên endamê Enstîtuya Kurdî ya Almanyayê Mirhem Yiğit, ew niha li ser şiklê dawî yê bernameya ku wê ji derdora 20 semîneran pêk bê, dixebitin û semîner wê li gelek zanîngehên Almanyayê bên li dar xistin. Yekemîn semînera li ser zimanê kurdî ji vê rêzê, wê di 28'ê vê mehê, di navbera seet 13.00-16.00'an de, li avahiya Enstîtuya Kurdî ya li Kölnê, bê li dar xistin û weke panêlîst ji wê Serokê PEN a Kurdî Dr. Zerdeşt Haco beşdar bibe. Mirhem Yiğit got ku armanca wan bi van semîneran ew e ku derfetên perwerdeyê yên akademîk ji bo xwendekarên zanîngehan peyda bikin û bingeha kursiyên zimanê kurdî li zanîngehên Almanyayê bê danîn.



*"Dibêjin çawa dibe ku kesek biyanî wêjeya alman, bi hunera kallîgrafîyê dikare bikarbîne û matmayî dimînin."*

Kallîgrafê kurd Zaid Şeno:

# Ez dixwazim kurdan bi rêya kallîgrafiyê bidim nasandin

**İSMET SİVEREKLİ**

**Berlîn (Rûdaw)** - Kallîgrafê kurd Zaid Şeno, ji Kurdistana Başûr e. Di dema zarokatîya xwe de, bi hunera kallîgrafî mijûl dibe. Hunera kallîgrafî, di xeyalên wî de cîheke giring digre û dixwaze rojek bibe kallîgrafêkî navdar. Ji bo ku ew vê xeyala xwe bîne cîh, welatê xwe diterikîne û berê xwe dide Almanyayê. Li vê derê dersên hunera kallîgrafiyê digre û dibe kallîgrafekî navneteweî yê navdar. Bi sedan tabloyên wî hene û bi van tabloyan pêşangehên navnetewî li dar dixe. Pêşangeha xwe ya dawî di roja 10'ê mijdarê de, di jêr navê "Li ser rûyê erdê bo herkesî cîh heye", li avahiya dezgeha jinên kurd 'Hînbûn'ê, li Berlînê pêşkêş kir. Pêşangeh wê heta sala 2010'an bidome. Rûdawê pêşangeha wî ya Berlînê ziyaret kir. Şeno diyar kir ku ew dixwazê bi rêya hunera kallîgrafîyê kurdan bi ewrûpiyan bide nasandin. Zaid Şeno da zanîn ku ewê di pêşeroje de bi munasebeta 250'emîn salvegera jidayîkbûna şaîrê gewre yê alman Johann Christoph Friedrich von Schiller pêşangehek hunerî li dar bixe. Di pêşangeha ku ew dixwaze li Başûrê Kurdistanê saz bike, wê gotinên navdar yên Schiller bike motîvên xebata xwe. Şeno dixwaze ji bo vê xebata xwe di çarçoveya 'Rojên Çandî yên Alman' alîkarî ji dezgehên al-

latînî ye û ji du ketiyan pêk tê. Ketîya yekem kalli ye û ji kallos tê. Kallos jî tê wateya xweşiyê û ketîya duyemîn grapihe jî tê wateya nivîs. Ango Kalligraphie, bi kurdî xweşnivîs e. Xweşnivîsî hunerek dîtbar e. Wateya wê ya nûjen, bi awayek watedar bikaranîna nîşaneyan ya harmonîk e. Ev huner li coxrafyayên cuda bi alfabe û nivîsên cuda derketiye holê. Li Kurdistanê bi tîpên erebî tê nasandin."

Hunera xweşnivîsinê di dema zarokatiyê de bala wî dikşîne: "Hunêra xweşnivîsînê, di dema zarokatiya min de bala min kişand û ez bi vê hunerê mijûl bûm. Min dixwest ez rojekê bibim xweşnivîsvanek navdar û vê hunerê bi awayek nûjen, bi tîpen latînî bikarbînim. "

Şêno ji bo hunera kallîgrafa nûjen, welatê xwe terk dike: "Li Kurdistanê derfet tinebûn ku ez vê hunerê bi şêweyên nûjen bikarbînim. Ji bo vê min beriya 6 salan welat terikand û ez

girtin. Herdu profesor di warê kallîgrafîyê de li seranserî cîhanê tên naskirin."

Heta îro li ser xweşnivîsîna nûjen bi sedan tablo çêkirî ye: "Min gelek tabloyên xweşnivîsînê çêkirîye. Piraniya van tabloyan bi tîpên latînî ne. Yên bi nivîsên erebî jî hatine xemilandin hene, lê ne zêde ne."

Pirtûkên wêjenasê Alman Johann Christoph Friedrich von Schiller dixwîne û dibe heyranê wî: "Min gelek pirtûken wêjenasê Alman Johann Christoph Friedrich von Schillerê xwendîye. Gotinên wî, zêdetir li ser aşitî û azadiyê ye. Min hin gotinên wî di hunera xwe de bikaranî. Nêzîkî 150 tabloyên min ji gotinên Schiller pêk tên. Ez ji ber heyraniya wî bûm endamê Komeleya Schiller."

Tabloyên xweşnivîsvanê kurd Şeno, li Ewrûpa û Kurdistanê di gelek pêşangehan de hatine nîşandin: "Pêşangeha min a yekemîn di sala 2004'an de li Stembolê çêbû. Ev pêşangeh ji alîyê Navenda Lêkolîn a Huner, Çand û Dîroka

kirin. IRCICA dezgehek Rêxistina Konferansa Îslamî ye. Heta niha sêcar bêşdarî vê pêşangehê bûme. Pêşangeha min a duyemîn li bajarê Almanya Stuttgartê, bi navê "Gotin û Bîr", a sêyemîn li bajarê Almanya Ludwigsburgê, a çaremîn li bajarê Kurdistanê Dohukê, a pêncemîn jî cardin li bajarê Almanyayê Marbachê lidarket."

Ew di hunera xwe de gotinên Schiller bikartîne û Almanan dike heyranên xwe: "Ez di hunera xwe de gotinên Schiller bikartînim. Alman qîmetê didin vê xabata min û pê kefxweş dibin. Dibêjin çawa dibe ku kesek biyanî wêjeya alman, bi hunera kallîgrafîyê dikare bikarbîne û matmayî dimînin. Li Kurdistanê hunera xweşnivîsîna klasîk gelek xurt e: "Xweşnivîsî li Kurdistanê gelek xurt e û gelek hunermedê xweşnivîsînê hene. Ew di hunera xwe de tîpen erebî bikaranîne. Ji bo vê yekê, ew li derveyî welêt nayên naskirin. "

Mebesta mijûlbûna min bi hunera kallîgrafîya nûjen re ji bo nasandina kurdan e: "Kurd di salên dawîye de li Ewrûpayê ne bi wêneyên delal hatin naskirin. Ez dixwazim vê îmajê bi hunera xwe bidim guhertin. Ji bo vê yekê, min dest avêt hunera kallîgrafîya nûjen. Dixwazim bi vê hunerê kurdan bidim nasandin. "



## Yekîtiya Ewrûpa û Peymana Lîsabonê



Dr. Nebî Kesen

Rojên dawî, di nav Yekîtiya Ewrûpa (YE) de çend bûyerên girîng pêk hatin. Di navenda van bûyeran de Peymana Lîsabon hebû. Lê raya giştî ya kurd li ser van bûyeran hindik sekinî û nirxand. Tenê di rojnameya "Yeni Özgür Politika" de hinek nivîs û nûçeyên fireh hatin weşandin. Bi Peymana Lîsabonê gelek aspektên girîng girêdayî ne û divê bên zanîn.

Peymana Lîsabonê di sala 2007'an de ji aliyê Konseya YE'yê ve hat pejirandin û di nava du salan de ji aliyê 27 dewletên endam ve hat erêkirin. Niha biryar û tespîtên ku di peymanê de cîh girtine, bo YE'yê derbas dibin. Di Peymana Lîsabonê de, wek destûrek, guhertinên bingehî hene û wê di pêşerojê de tesîrek mezin li ser siyaset û îdarekirina YE'yê bike.

Hinek guhertinên ku li ser sazgeh û strûktûra YE'yê pêk hatine, yên Peymana Lîsabonê ev in:

- Serokatiya Konseya YE wê ji aliyê şexsekî ve bê kirin. Heta niha dewleteke endam xebata serokatiyê dikir. Wek Serokê Konseyê yê yekem Serokwezîrê Belçîka Herman van Rompuy hat hilbijartin û ewê di sala 2010'an de dest bi xebatê bike.

- Bo Siyaseta Derve û Ewlekariya YE'yê divê kesek bê hilbijartin. Wezîfeya wî kesî ewe ku çarçoveya siyaseta YE tespît û îcra bike. Bo vî karî, ku mîsyono wezîrekî bilîze, saziya Berdevka Mezin Bo Siyaseta Derve û Ewlekarî hat damezrandin. Jinek îngilîzî, Catherîna Ashton, bû berdevka YE'yê.

- Konseya YE bo biryarên xwe ne hewceyê tesdiqa hemû dewletên endam e. Bi gotinek din, vetokirina dewletekê ji holê rabû. Gora Peymana Lîsabon, konsey ji sedî 55 dengên dewletan, yan jî bi dengê dewletên ku nifûsa wan ji sedî 65 digre, dikare biryar derxe. Bi vî awayî, bo YE, ji aliyê biryar û tespîtkirina siyaseta derve, ewlekarî û hwd. rê vebû.

- YE bi saya Peymana Lîsabonê, bo peymanên navnetewî selahiyetên fireh bi dest xist. Heta niha pêwîstî bû ku hemû dewletên endam peymanên navnetewî tesdîq bikin.

- Şarta Mafên Bîngeh ên Yekitiya Ewrûpa bo hemû dewletên endam derbas dibe. Ji niha û pê ve hemû dewletên endam mecbûr in ku siyaseta xwe di warê mafên mirovan de li gor vê şertê bînin cîh. Ji bo dewletên berendam wek Tirkiye, naveroka Şarta Mafên Bingeh gelek girîng e û divê di pêvajoya berendametiya de bê ber çavan.

- Ji aliyekî ve selahiyetên Parlamentoya Ewrûpayê hatin firehkirin. Ji aliyê din ve, parlamentoyên netewî bûne xwediyê hinek mafan, da ku ji bûtçeya YE'yê sûd bigrin. Herdu gav ji bo demokratîkbûna YE pêwîst in û di cîh de ne. Di dîroka tewlîbûna YE'yê de, Peymana Lîsabon wê rolek mezin bilîze. Bandorên peymanê di siyaseta derve, ewlekarî û hundurî ya YE de wê di dema pêş de baş xuya bibin. Dikarim bêjim ku xebat û hewldanên YE'yê bi Peymana Lîsabon kete merhaleyek nû.

Ji aliyê kurdan pêwîst e ku Peymana Lîsabonê û encamên wê di heman demê de bên fahmkirin û şirovekirin. Divê zanyar û nivîskarên kurd li ser wê dîtin û pêşniyarên xwe pêşkeşê raya giştî bikin. Di vir de kêmasiyek heye û divê bê guhertin.




Komeleyên jinan li dijî helwesta profesorên seksxwaz li Kievê di kolanan de xwepêsandanan li dar xistin.

Ûkrayna

# Li hemberî dîplomayê seks

*Piştî hilweşîna Sovyetê, turîsma seksê li gelek komarên berê belav bû. Xwendevanên zanîngehên ûkraynî bal kişandin ser rewşa xwe ya li zanîngehan. Li hemberî serkeftina di ezmûnan de, gelek profesor ji kecan seksê dixwazin.*

**Köln (Rûdaw)** – Xwendekareke jin li pêş profesorekî li ser çokan e û yeka din xwe li ser ranê profesorekî din dirêj kiriye, di deste wê de pîrtûkeke perwerdeyê. Profesor jî dest davêjin xwendekaran û wan ”perwerde” dikin. Bi vî awayî çendîn xwendekarên jin helwesta xwe li dijî destdirêjkirina jinan li zanîngehên Ûkraynayê nîşanî raya giştî dan.

Di demekê de ku li Almanya û çendîn welatên Ewrûpayê bi dehhezaran xwedekar ji bo perwerdeyeke baştir û mafê tevlîkirina wan di lijneyên biryardayînê yên zanîngehan de li kolanan in, xwendekarên ûkraynî bi pirsgirêkên cudatir re mijûl in.

Gelek xwendekarên ukrayînî yên jin gazinan dikin ku ew li zanîngehan rastî destdirêjiyan tên û profesorên wan li hemberî serkeftina di ezmûnan de seksê ji xwendekaran dixwazin.

Bo protestokirina vê rewşê rêxistina mafê jinan ya ûkraynî ”Femen” çalakiyek protestoyî ya balkêş li peşberî Wezareta Zanistê li Kîevê li dar xist. Xwendekarên jin ên ku nîvtazî û bi kincên kin tevlî çalakiyê bûn, nerazîbûna xwe li hemberî vê rewşê anîn ziman.

Ûrkayna her ku diçe, dibe navendek turîzma seksê. Ji welatên rojavayê Ewrûpayê gelek kes bi vê armancê di mehên havînê de diçin vî welatî.

Alîkariya aborî ya kêm bo xwendekaran û giranbûna bihayê xwarin û malan li bajarên Ûrkaynayê li aliyekî, li aliyê din jî tunebûna derfetan û karên baş, xwendekarên jin mecbûr dikin ku daxwazên profesorên zanîngehan qebûl bikin.

Beşdarvanek çalakiya li pêşberî Wezareta Zanistê, endama rêxistina Femen, Anna Hutsol, wiha got: ”Piraniya jinan bi fêdîkirinek mezin li ser rewşa xwe diaxifin, rewşa ku ji ber pirsgirêkên aborî ew ketinayê.”

Xwediyê malpereke seksê di înternetê de, sedemên ku xwendekarên jin laşê xwe difroşin wiha anî ziman: ”Kêm cihên ku pereyekî baş didin derçûyên zanîngehan hene. Jinên ciwan jî otomobîlên lûks û vîlayan dibînîn û ew jî van tiştan dixwazin. Ji ber vê yekê ew bi xwe laşfiroşiyê qebûl dikin.”

# YE jî bû xwedî serok û wezîra derve

*YE, piştî danûstandinên dirêj li ser du kesên nenaskirî li hev kir. Destnîşankirina Herman Van Rompuy û Catherine Ashton weke ji dest berdana firsetekê bo bihêzkirina YE'yê tê hesibandin.*

**Köln (Rûdaw)** – Ewrûpayê serokên xwe bijartin lê bi wan ne dilxweş e. Du kesên ku heta niha di asta Ewrûpayê de nedihatin naskirin, bûn yekemîn serokê Yekîtiya Ewrûpayê (YE) û yekemîn “Wezîra Derve“ ya YE'yê. Biryara destnîşankirina herdu kesan ji gelek aliyan ve hat rexne kirin û weke gaveke ber bi paş ve hat nirxandin.



Herman Van Rompuy û Catherine Ashton

Pêncşema borî serokên welatên YE'yê li Brûkselê komîsara bazirganiyê ya brîtanî Catherine Ashton (53), weke yekemîn Wezîra Derve ya YE'yê û Serokwezîrê Belçîkayê Herman Van Rompuy (62) jî weke yekemîn serokê YE'yê destnîşan kirin.

Bi hefteyan serokên welatên Yekîtiya Ewrûpayê li ser van herdu postên girîng ketibûn nava pokerê û nîqaş dikirin û di pêvajoya nîqaşan de hemû kesên naskirî yên weke serokwezîrê berê yê Brîtanyayê Tony Blair, an jî Serokwezîrê Lûksembûrgê Jean-Claude Juncker, ji aliyê çendîn welatên Ewrûpa ve hatin vetokirin. Di dawiyê de Catherine Ashton û Herman Van Rompuy man. Ti serok û serokwezîrê ji 27 welatên YE'yê li dijî destnîşankirina Van Rompuy weke yekemîn serokê YE derneketin û sedemê serketina wî jî ev bû. Lê çawa ku kesek li dijî destnîşankirina wî derneket, ew hewqasî jî bêhêz tê hesibandin. Piştî destnîşankirina Catherine Ashton weke Wezîra Derve ya YE'yê, serokê berê ye Komisyona YE'yê, Romano Prodi, pirsî: “Ew kî ye?“

Gelek kes bi destnîşankirina herdu dîplomatan ne dilxweş in, wekî serokê Sosyalîstan di Parlamena Ewrûpayê de Martin Schulz: “Ez ne kêfxweş im, ji ber ku favorîtên min Wezîrê Dervê yê Îtalyayê Massimo D'Alema û Junckerê lûksembûrgî bûn. Lê divê mirov şansekî bide herdu kesên nû.“ Junckerê ku di pirsên Ewrûpayê de gelekî şareza ye û gelek derdoran ew weke favorît dihesibandin, ji ber vetokirina komek biçûk ji welatan û bi taybetî jî Fransayê, nehat destnîşankirin.

Van Rompuys wê di 1'ê çileya 2010'an de dest bi karê xwe bike û dewra wî ya serokatiyê wê du sal û nîv be, lê ew dikare ji bo pênc salan bê dirêj kirin. Van Rompuy di demên borî de li dijî endametiya Tirkiyeyê di YE'yê de derketibû. Piştî destnîşankirina wî weke serokê YE'yê, Van Rompuy got ku tevlî nêrîna wî ya şeqsî, ewê bi danûstandinên endametiyê yên li gel Tirkiyeyê girêdayî be.

# Almanya dersînorkirina 31 hezar biyaniyan nîqaş dike

*Di 31'ê kanûnê de moleta kardîtina bêtirî 30 hezar biyaniyan bi dawî dibe. Kesê ku heta hingî kar nebîne, statûya “Aufenthaltserlaubnis auf Probe“ winda dike. Hikûmet dirêjkirina demê nîqaş dike.*

**Köln (Rûdaw)** – 31 hezar biyanî dîsa di tirsê de ne. Guftûgoyên li ser mafê mayîna biyaniyên ku çend salan bi fermî li Almanyayê dijîn, dîsa dest pê kirin: FDP pêşniyar dike ku mafê mayînê bê dirêjkirin û CDU jî dixwaze ku biyanî hewl bidin ku kar ji xwe re bibînin, ji bo ku ji niha û şûn de jî karibin sînordar li Almanyayê bijîn.

Wezîrên Naxwe yên parezgehên Almanyayê li ser dirêjkirina mafê mayîna 31 hezar biyaniyên ku xwedî statûya “Duldung“ in, ne hemfikr in. Wezîrên Navxwe yên ser bi SPD û partiya FDP dixwazin ku di “Konferansa Wezîrên Navxwe“ Innenministerkonferenz - IMK de – ku wê di 3 û 4'ê kanûnê li Bremenê li dar keve – mafê mayîna wan biyaniyan herî kêm salekê bê dirêjkirin. CDU jî dixwaze mafê mayîna bêsînor bi peydakirina kar ji aliyê wan kesan ve girê bide. Serokê Koma Xebatê ya Siyaseta Navxwe û Dadê yê ser bi FDP, Hartfrid Wolff, ji rojnama “Die Welt“ re wiha axifî: “Pêwistiya me bi salekê dem heye, ji bo ku em çareseriyek mantiqî û xweragir bibînin“

Heta havîna îsal bi giştî 62.600 biyaniyên xwedî statûya “Duldung“ mafê mayînê (Aufenthaltserlaubnis) wergirtibûn. 31 hezarên wan kesan tenê statûya “Aufenthaltserlaubnis auf Probe“ – yanî mafê mayînê li ser bingeha ceribandinê – wergirtibûn, ji ber ku wan kesan nekarîbû bi serê xwe û bêyî alîkariya dewletê debara xwe bikin. Heta dawiya salê ew kes mecbûrin karekî xwe bibin, eger na, ewê dîsa dakevin statuya Duldung ê. Ji ber wê yekê Konferansa Wezîrên Navxwe wê dirêjkirina dema moletê guftûgo bike.




Zarok jî bo mafê mayînê têdikoşin: “Li vir dimîne! Mafê mayînê”

Di sala 2007'an de ji aliyê hikûmeta berê ya Almanyayê qanûnek di derbarê biyaniyên ku demeke dirêj li Almanyayê dijîn, lê mafê mayinê wernegirtibûn, hatibû derxistin. Li gor wê qanûnê, kesên ku heşt salan (kesê bi serê xwe) an jî şeş salan (malbat tevî zarokên di jêr 18 salan de) li Almanyayê dijîyan, statuya “Aufenthaltserlaubnis auf Probe“ wergirtibûn û molet ji bo wan hatibû dayîn ku heta 31'ê kanûna 2009'an karekî xwe bibinîn ku karibin bêyî alîkariya dewletê debara xwe pê bikin. Eger nikaribin kar ji xwe re bibînin, ew dîsa dikevin statuya “Duldung” ê, an jî tên dersînor kirin.

Di vê dema dawî de 7 hezar hemwelatiyên Sûriyeyê jî, ku gelekên wan penaberên ji Başûr-Rojavayê Kurdistanê ne, li Almanyayê bi paşveşandinê re rû bi rû mabûn û di van çend mehên borî de çendîn malbatên kurd paşve hatibûn şandin. Biryara dadgeheke bajarê Osnabrücke di meha borî de, ku dersînorkirina malbatek kurd rawestand, bûbû cihê heviyê.

Serokên FDLR hatin girtin

# Qatlîam ji Almanyayê birêvebirine

*Ji Mannheim a Almanyayê, bi rêya telefon û înternetê, rêxistinek çekdarî rêve dibirin. Niha ji du serokên rêxistina ruwandî FDLR, ku bi qirkirin û komkujiyan tê tewanbarkirin, ji aliyê hêzên Almanyayê hatin girtin.*



*Serokê FDLR Ignace Murwanachyaka*

**Serwisa Cîhanê (Rûdaw)** – Bi sedema tawanên di şer de du serokên rêxistina çekdar ya ruwandî FDLR, Ignace Murwanachyaka (46) û Straton Musoni (48), sêşema borî li Mannheim a Almanyayê hatin binçavkirin. Piştî girtina herdu serokan, çavdêr li bendê ne ku rêxistina FDLR lawaz bibe û rewşa herêmên di jêr kontrola FDLR li rojhilatê Komara Demokratîk ya Kongoyê baştir bibe.

Dozgeriya Federal dixwaze herdu kesên binçavkirî ji ber tawanên di şer de û tawanên li dijî mirovantiyê darizîne. Bi vî awayî, piştî ku qanûna navnetewî ya tawanan di sala 2002'an li Almanyayê ket dewrê, ev cara yekê ye ku kesek li Almanyayê ji ber sûcekî li derveyî Almanyayê tê darizandin. Qanûn navborî rê dide dadgehên Almanyayê ku sûcên giran bişopîne, ew tawan li ku welatî pêk hatibin jî.

Serokên FDLR ku rêxistinek gelê hûtû ye û tê wateya "Hêzên Demokratîk yên Azadiya Ruwandayê" ji komkujiya li Ruwandayê ya li dijî gelê tûtsî berpirsyar tê dîtin. Di sala 1994'an de hêzên FDLR û rêxistinên din yên hûtûyan komkujiyêk li dijî gelê tûtsî pêk anîn û di encamê de dedora 800 hezar mirovan jiyana xwe ji dest dan. Piştî wî şerê li dijî hêzên tûtsiyan, hêzên FDLR di sala 1994'an de ji Ruwandayê reviyabûn rojhilatê Kongoyê û ji hingî ve herêma Kivu, ya xwedî çavkaniyen xwezayî yên dewlemend, kontrol dikin. Li rojhilatê Kongoyê ji endamên FDLR tevlî gelek tawan, komkujî, destdirêjiyên komî û talankirinan bûn û rêxistinên navnetewî yên mafên mirovan gelek caran ev yek gilî kirin. Hebûna hêzên FDLR wekê rêgira bingehîn li pêşiya aştiya li wê herêmê tê dîtin. Tê gotin ku FDLR xwe bi qaçaxtiya çavkaniyên xwezayî ji herêma Kivu fînanse dike û rêxistin ji ji Ewrûpa û bakurê Amerîkayê tê îdare û rêvebirin.

Murwanashyaka ku ji sala 2001'an ve serokê FDLR ye, bi wê yekê tê sûcdarkirin ku wî ji Almanyayê ferman daye hêzên çekdarî yên FDLR li rojhilatê Kongoyê. Musoni ji ku ji sala 2005'an ve cîgirê Murwanashyaka ye, tê tewanbar kirin ku wî di babetên şer de cîgiriya Murwanashyaka kiriye û amojgariya wî kiriye. Murwanashyaka ji sala 1989'an de li Almanyayê dijî û ji sala 2000'an ve mafê panebertiyê li Almanyayê wergirtibû.

Rêxistinên mafên mirovan û endamên Netewen Yekgirtî gelek caran bûn şahidên kiryarên FDLR, lê girêdana wan kiryaran bi fermanên herdu serokên wê rêxistinê li Almanyayê ji aliyê dadî ve karekî zor bû û doza destpêkê li dijî wan li Almanyayê ji ber kêmbûna ispatan hatibû rawestandin. Herdu serokên FDLR çendîn salan li Almanyayê xebata xwe bêyî ti pirsgirêkan ji aliyê rayedarên hukmî didomandin.

Girtina herdu serokên FDLR weke derbeyeke mezin li dijî vê rêxistinê tê hesibandin û çavdêr li bendê ne ku hêzên FDLR bêyî serokên xwe nikaribin weke berê tevbigerin, lê nayê çaverêkirin ku şervanên vê rêxistinê şerê xwe heman rawestînin jî. Di vê dawiyê de artêşa Kongoyê bi hevkariya hêzên Netewên Yekgirtî hewl dide ku bi operasyonên leşkerî hêzên FDLR ji rojhilatê Kongoyê derxînin. Saziyên navnetewî li herêmê ragihînin ku wekî bersiva van operasyonan, hêzên FDLR tola xwe ji gelê herêmê distîne.



*Di şerê li Ruwandayê yê sala 1994'an de 800 hezar mirovan, piranî ji gelê tûtsî, jiyana xwe ji dest dan*

# Paytexta tiryakê: Tehran

*Lêkolînên dawî nîşan didin ku Îran ew welat e ku li gor hejmara niştecîhan li herî zêde madeyên tiryakê tên bikaranîn. Li aliyê din jî rayedarên îranî lêdixebitin ku tiryakê li nav herêmên kurdan jî belav bikin.*

**Serwisa Cîhanê (Rûdaw)** – Buroya Netewên Yekgirtî ya Têkoşîna li dijî Tilyak û Tawanan, raporta xwe ya salane di berbarê rewşa bikaranîna tilyakê li seranserê cîhanê eşkere kir. Li gor raportê, li ti welatî hewqas mirov weke li Îranê ne pêgirtên tilyakê ne.

Li gor raporta dawî ya Netewên Yekgirtî (NY), li Îranê du milyon kesên pêdagirên tilyakê hene. Li gor hejmara niştecîhan ya 72 milyonî, Îran welatê xwedî herî zêde pêgirên tilyakê ye.

Li gor sosyolê îranî Dr. Paramarz Gharehbaghi, tunebûna alternatîfan û têkçûna normên civakî sedemên bingehîn in ji bo bikaranîna tilyakê: "civaka îranî, civakeke ciwan e. Û tiştê ku diviyabû hikûmetê ji bo wan bikrana, heta niha nekir û bi vî awayî ciwan bi xwebixwe û bi bêperspektîfbûne re rû bi rû diminin." Gharehbaghi dibeje ku ji bilî vê yekê jî, şoreşa Îslamî û şerê heşt salî yê di navbera Îran û Îraqê (1980 – 1988) normên civakî bi temamî guhertin. Wekî mînak malbatê weke enstîtusyonek civakî piştî şoreşê normên xwe yên çandî winda kirin û bi vê yekê re jî xwepêgirek bingehîn di jiyana zarok û ciwanan de têk çû.

Beşek mezin ji tiryaka ku li Îrane tê



*Herî zêde heroîn û krak tên bikaranîn*

firotin, ji Afxanistanê tê. Tevlî vê yekê jî hêzên sînorparêz yên Îranê wê yekê red dikin ku qaçaxtiya tiryakê ya navbera Îran û Afxanistanê cihê metirsiyê ye. Lê NY di raporta xwe de destnîşan dikin ku rêya dirokî "rêya hevrişîmê" bûye "rêya heroînê" ê û bangî welatên herêmê dikin ku însiyatîfek sêqolî di navbera Îran, Afxanistan û Pakistanê de pêk bînin, ji bo ku zû pêşî lê bazirganiya tiryakê bê girtin.

Li gor nûtirîn lêkolînan, heroîn, krak û krystal cureyen tiryakê ne ku di nav ciwanên îranî de herî zêde tên hezkirin. Li ti welatê din yê cîhanê hewqas mirov van cûreyên tiryakê bikar nayînin, weke li Îranê û li kêm welatê din peydakirina tiryakê hewqasî hêsan e. Kesên pêgirên tiryakê dibêjin ku danûstandina tiryakê li ser kolanan pêk tê û gelek kesen tiryakfiroş di dukanên xwarinfiroşiyê de kar dikin.

Sedema zêdebikaranîna heroîn û krak ji aliyê ciwan ve ne tenê ew e ku ciwan dikarin bi hêsanî xwe bighînin wan, lê nirxê wan yê kirînê ye. Berê gramek kristal bi 60 Euro dihat firotin, lê niha gram bi 5 Euro ye. Sedema vê yekê jî ewe ku berê madeya ephedrin ji bo hilberîna kristal dihat bikaranîn û ev yek jî geleki buha bû. Niha madeya anti-histamin tê bikaranîn ku pakêta wê bi 40 Euro ye û ji wê pakêtê 120 gram kristal tên hilberîn.

Li aliyê din rayedarên îranî lêdixebitin ku ciwanên kurd ji siyasetê dûr bixin. Tê gotin ku hêzên îranî bi zanebûn rê didin belavbûna madeyên tiryakê û heta bi xwe jî van madeyan li nav ciwanên parêzgehên Rojhilatê Kurdistanê belav dikin. Di van salên dawî de rayedarên îranî berê xwe dane Başûrê Kurdistanê jî û hewl dide ku bikaranîna tiryakê li wir jî belav bike.



*Gelek zarokên amerîkî bi xwarina zû "fast food" xwe têr dikin*

# 50 milyon amerîkî birçî ne!

**Köln** – Amerîkî bi giştî weke neteweke qelew tên naskirin. Lê ev tenê aliyekî medalye ye. Ji ber qeyrana aborî ya sala borî, derfetên madî yên 50 milyon amerîkiyan nebû ku têra xwe xwarinê bikirin û gelekên wan mecbûrî birçîbûnê man.

Li gor lêkolîneke Wezareta Çandiniyê ya DYA'yê, sala borî ji sedî 14,6 ên malbatan dem dem bê mejal bûn ku têra hemû endamên malbatê xwarin bistînin.

Di sala 2007'an de ev rêje tenê ji sedî 11 bû. Serokê DYA'yê, Barack Obama, got ku cihê xemê ye ku zarokên biçûk ji di nav wan kesan de ne û soz da ku ew ê li dijî birçîbûnê xwetêrkirina şaş têbikoşin.

Li gor daxuyaniyên wezaretê, kêsên bahskirî bi awayên cuda li hemberî tinebûna derfetên xwarinkirinê helwest nîşan dan: ji sêyan dûyên wan kesan bi kirîna xwarina erzantir, wergirtina xwarinê ji aliyê saziyên alîkar, an ji awayên din yên alîkariwergirtinê pirsgirêkên xwe yên birçîbûnê çareser kirin. Û ji seyên yekê wan kesan jî mecbûr man ku xwarina xwe kêmtir bikin.


İsmail Beşikçi (Wêne: Hülya Yetişen)

*Rojawan de zanist, Rojhelat de îlm aver şîyo. Fehmkerdişê tebîet, cemat û însanî de, yê zanistî û yê îlmî yewbînî ra zaf cîya yê. Rojawan de, ronesans û îcadê metbea, averşîyayîşê zanistî de, bêguman, rolêko pîl kaykerdo. O dewr de, cîhanê Rojhelatî de dogmatîzmêko tarî esto.*

# Rojhelat û Rojawan - II

**ÎSMAÎL BEŞÎKÇÎ**

Rojhelat de zî kesê ke bi zanistîyanê pozîtîfan reyde eleqedar bîyê, eke zaf tay bê zî, estê. Nimûne, Înb-ul Heysem (965-1093). Lê tesîrê Înb-ul Heysemî fikrê îslamî ser o hema vajêne ke çin o. Înb-ul Heysemê fîzîkkarî tim tesîr ro zanyaranê Rojawanî kerdo. Îbn Ruşdî (1129-1198) vato, dîn kesane yo, problemêko dinyaya zereyî ra eleqedar o. Tekîd kerdo ke bi hawayê teolojîkî îzehkerdişê dinya, na senînîya dinya xeripnaya, naye zî fehmkerdişê dinya zehmet kerdo. Tesîrêkê Îbn Ruşdî zî fikrê îslamî ser o çin o. Îbn Ruşdî zî tesîr ro zanyaranê Rojhelatî kerdo. Metamatîkzan, astronom û şaîr Omer Xeyyam (1048-1131) mutefekirêko winasî yo ke her wext ameyo qedexekerdiş. Mutefekiro ke tewr zêde tesîr ro fikrê îslamî kerdo, Xezalî (1058-1111) yo. Babetanê Quran, fiqih, kelam, hedîs û tefsîri ra teber qedexekerdişê averşîyayîşan û fehmkerdişanê bînan de helwêsta Xezalî bitesîr bîya. (Peter Adamson-Richard C. Taylor, İslam Felsefesine Giriş, Tercüme Cüneyt Kaya, Küre Yayınları, Mart 2007)

Farabî (875-950), Bîrûnî (973-1048) û Îbn Sîna (980-1036) hîna vêşî tesîr ro derûdorê zanistî yê Rojawanî kerdo. (Selahattin Hilav, Felsefe El Kitabı, Yapı Kredi Yayınları, Nisan 2009)

Îbn Xaldun (1332-1406) zî mutefekirêkê Rojhelatî yo. La tesîrêko cidî yê Îbn Xaldunî zî fikrê îslamî ser o çin o. Îbn Xaldun hîna zaf tesîr ro mutefekiranê Rojawanî kerdo. (Ümit Hasan, İbn Haldun'un Metodu ve Siyast Teorisi, Siyasal Bilgiler Fakültesi Yayını, Ankara 1977)

Michael Servetius (1511-1553) rahîbêko spanyol o. Vanê tarîxê tibî de ey herikîyayîşo qij yê gonî dîyo. Hem xebata xo ya wucûdê însanî ser o hem zî şîrovekerdişê Încîlî ver, bi emirê Jean Calvinî (1509-1564) gane-gane ameyo veşnayîş. Na bîyene ser o yewna roşnvîr Sebastian Castellioyî (1515-1563) Calvinî bi qatîlîye sucdar kerdo, paştgirîya Servetiusî kerda. Tekîd kerdo ke Servetius beyankerdişê fikranê xo de azad o. Sebastian Castellio na helwêsta xo ver maruzê mexdûrîyetanê zaf giranan bîyo. La Sebastian Castellio fek mudafeakerdişê Servetiusî ra veranêdayo, bi qatîlîye sucdarkerdişê Calvinî ra zî xo apey nêdayo. Stefan Zweig (1881-1942) kitabê xo Calvin'e Karşı Castellio, Ya da Köleliğe Karşı Özgür Düşünce (Çeviri: Seyla Kaya, Çiviyazıları, 1998) de nê têkilîyan dergûdila qisey keno. Na bîyene, peynîya seserra 19. de, Fransa de, Emile Zola (1840-1902) ke sergord Alfred Dreyfusî (1859-1935) mudafea kerdêne, ano vîrê merdimî. Mumkin nîyo ke merdim cîhanê îslamê de rastê têkilîyêka winasî bibo.

Rojawan de zanist, Rojhelat de îlm aver şîyo. Fehmkerdişê tebîet, cemat û însanî de, yê zanistî û yê îlmî yewbînî ra zaf cîya yê. Rojawan de, ronesans û îcadê metbea, averşîyayîşê zanistî de, bêguman, rolêko pîl kaykerdo. O dewr de, cîhanê Rojhelatî de dogmatîzmêko tarî esto. Dogmatîzm, bêguman xiristîyanî de zî esto. La atmosfero ke Rojawan de bi, şênayo mucadeleyê vera nê dogmatîzmî bido destpêkerdiş. Feqet Rojhelat de dogmatîzm binê fehmê "îlm"î de dewam kerdo şîyo.

Îslam dînêko winasî yo ke bi zorê şimşêrê vila bîyo, bi zorê şimşêrî bi şaran dîyîyayo qebulkerdiş. Verê Îslamî Rojhelato Mîyanên de sabiî, herranî estibîy. Nimûne, mintiqaya Herranî de babetanê se matematîk, fîzîk, tib û astronomî de averşîyayîşêko zaf gurr estbi. Mezopotamya de zîret aver şibi. Do key varitî bivaro, varita ke varane do tesîrê aye senî bo, cigêrayîşê rîyê asmênî, yê astronomîyî aver berdibî. Dewrê xelîfe Omerî (634-644) de nê şarî qey îslamî dawet bîyê, înanê ke îslamîyet qebul nêkerdo, dîyîyaybî fekê şimşêran. Kitab û kitabxaneyê nê şaran ameybî veşnayîş. Vatêne "Xora her çî Quran de nuşte yo. Naye ra hewce bi nê kitaban nîyo." Fehmê "çîyo ke nê kitaban de nuşte yo eke xîlafê Quranî de yo, a game, ganî bîyerê veşnayîş, bîyerê çinkerdiş" serdest bi. Mijulîya zanistîyanê pozîtîfan reyde, dewrê averşîyayîşê îslamî de, rîyê tada ra, her ke şi, kêmîya. Zemanî reyra, wendeyê şaranê sabiî, herranî û asûrî-suryanî zî babetanê se fîzîk, tib û astronomî ra visyay û babetanê se fiqih, hedîs, kelam û tefsîrî reyde êdî eleqedar bîy. Serebutê cuya Sabit bîn Qurra Herranî (821-901), lajê Sabit bîn Qurra Herranî Sînan (merg: 943), lajê Sînanî Sabit (907-943) û lajê Sînanî yo bîn Îbrahîmî (908-946) roşn fînenê na bîyene ser. (Kazım Sarıkavak, Düşünce Tarihinde Urfa ve Harran, Türkiye Diyanet Vakfı Yay. s.30-43, Ramazan Seşen, Harran Tarihi, Türkiye Diyanet Vakfı Yay. s.52-82) Unsal Ozturk na babete de xebatêka erjaya keno.

Astronomî, Rojhelat de zî wareyêko muhîm yê mijulîye bi. La no gureyêko sey falbazîye bi. Mavajî, hukimdar seba ke bimuso şer de ser keweno yan ney, yew lajê ey, welîahdêk ci rê beno yan ney, qesre de remldarî zî îstîxdam kerdêne. La herranî û asurî-suryanîyan de cigêrayîşê astronomî seba zîretî lazimî bîy. Varitî, laser, firtone, vewre û va seba zîretî faktorê muhîmî bîy. Na rey Rojawan de astronomî seba fehmkerdişê tebîetî, seba na babete de bi ca ardişê meraqî, wareyê muracatî bi.

(Nuşte dom keno...)

## Dizdê Rezan


Roşan Lezgîn

Lajê Ap Husê Keyê Hesan ê qicî newe dest bi wendiş kerdibi, şîyne verê Ap Deqmanî de dersa Elîfbê girewtêne. Ap Hus û Ap Deqman zemanan ra reqîbê yewbînî bîy, hertim yewbînî de sere antêne.

Badê ke hewteyêk ser de şi, Ap Husî venga lajê xo da, va:

- Dê hela bê tîya. To dersa xo ezber kerda yan ney?

Lajekî va:

- E bawo, mi ezber kerda.

Ap Husî va:

- Dê hela biwane.

Lajekî bi heme masumîya xo dersa ke ezber kerda, babîyê xo rê wina tekrar kerde:

Elîf û bê û tê û sê û cîm
Huso pîso çikuso recîm
Hê û xê û dal û zal û rê û sîn
Husî da piro şi hetanî Waresîn
Şîn û sad û dat û tê û zê û eyn
Huso şeytano mizawiro quleteyn
Xeyn û fê û qaf û kaf û lam û mîm
Huso dizd şino mîyanê rezê Merrnîm
Hê û lam elîf la û yê, dersa ma bes
Huso, engura şarî mewe, hendî bes!

Ap Husî hol fehm kerd ke mesela çî ya! Didanê xo pêsero şidênay, qirçî fek ra şîye. Heme muyê ey sey dijeyî tîk bîy. Bi hêrs qîra lajekî ser. Va:

- Meşo verê ê melûnî de ders megîre. Çi wendiş o, çi hal o! Rasterast şîretanê şeytanîye keno!

# Le Monde diplomatique kurdkî vejêno

**Köln (Rûdaw)** - Rojnameyê mîyanneteweyî Le Monde diplomatique ke 46 welatan de bi 26 ziwanî weşane keno û wayîrê di mîlyon û nîm tîrajî yo, êdî bi kurdkî zî weşanîyêno. Le Monde diplomatique Ewrûpa de bi lehçeya kurmanckî, Kurdîstanê Başûrî de zî bi lehçeya sorankî dest bi weşane kerd.

Le Monde diplomatique bi nê ziwanan weşanîyêno: afrîkî, erebkî, bulxarkî, almankî, çînkî, îngilîzkî, esperantokî, fariskî, fînkî, fransî, îtalyankî, japonkî, koreyîkî, kurdkî, xirwatkî, macarkî, norweçkî, polonkî, portekîzkî, ruskî, sirbkî, slowenkî, spanyolkî û yunankî.

Edîtorê umûmî nuştox û rojnameger Faysal Dagli, edîtorê umûmî yê qismê soranki zî rojnamegere Nazand Begixanî, yo. Şêwermendê umûmî Bêrîvan Aymaz e. Asîstanê weşane Selam Sadî û Semîra Bolat ê. Îdarekerdoxê qismê hunerî yê rojnameyî Mehmet Nazmî Demir û Bextîyar Mistefa yî.

Qismêk xeber û nuştey hetê edîtorîye ra amade benê la qismêk zî versîyonê fransî ra tercume benê. Qismê kurmanckî yê Le Monde diplomatique kurdkî de Îbrahîm Seydo Aydoğan, Aynur Bozkurt, Cemîl Denli, Salih Kevirbirî, Emrah Kocahal, Alîxan Serhedî, Loqman Turgut û Ergîn Opengin, qismê soranki de zî Muhsîn Ahmed, Amir Ahmed, Herdî Baban, Kawa Destûreh, Mesûd Diryaz, Ahmedê Mela û Mansûr Sedxî sey tercuman xebitênê.

Le Monde Diplomatique Kurdkî Ewropa de hetê Rûdaw Media GmbH ra, Kurdîstanê Başûrî de zî hetê Rûdaw Media Company ra weşanîyeno.

Merdim şêno Le Monde Diplomatique Kurdkî Internetî ser o, adresa http://www.lemondediplo-kurdi.com de zî taqîb bikero.



Parlameterê Rihayê İbrahim Binici:

# Tirkiye pirsgirêka kurd çareser neke, wê leqayê felaketê bê

*“Tirkiye ne dewleteke mezin e. Erdê wê mezin e lê dewlet bêçare ye, deyndar e. Ji bo ku pirsgirêka kurd çareser nekiriye nêzikî 400 milyar dolar ketiye binî deyn. Malbateke deyndar çawa dikare alikariya derûdorê xwe bike. Bila pêşî nava xwe çareser bike, paşê here Afxanistan û Filistinê”*



*İbrahim Binici* *(Wêne: Rûdaw)*

**AKO MİHEMMED**

**Enqere (Rûdaw)** - İbrahim Binici wek parlamenê Rihayê di hilbijartinên 2007’an de ji lîsteya DTP’ê ya serbixwe hat hilbijartin. Di hilbijartinan de ji bilî wî, li Rihayê yek serbixwe û 9 jî AKP’yî hatin hilbijartin. Binici, Rihayê wek bajarê peyxamberan û navenda kesên leheng binavdike û wiha dibêje: “Siyaseta qirêj nahêle ku li Rihayê siyaseta welatperêziyê geş bibe.” Ew dibêje ku li parlamentoyê ew bi parlamenên kurd ên AKP’yî re gelek caran rastê hevdu tên û diaxifin, lê ew wek wan ne ji bo armancên siyasî hatine parlamentoyê. “Ji me re dibêjin barê we giran e, em nikarin wek we tevbigerin, em ji bo berjewendiyên xwe yên aborî hatine parlamentoyê.” Binici Tirkiyeyê dewleteke mezin nabîne û dibêje jiber ku pirsgirêka Kurd çareser nake Tirkiye ketiye binê deynan: “Tirkiye an pirsgirêka kurd çareser dike an dikeve nava felaketê.” Binici di wê baweriyê de ye ku tu projeya dewleta tirk a çareserkirina kurd tuneye û dibêje helwesta wan tunekirin e. İbrahim Binici pirsên Rûdawê wiha bersivand…

***Em dixwazin bi kurtî we nasbikin.***

İbrahim Binici, yanî İbrahim Siwar. Ez di sala 1958’an de li li navçeya Pirsusê (Suruç), gundê Midêbê, Rihayê hatime dinyayê. Malbata min karê cotkariyê dikir; min dibistana serete li gund xwend. Liseyê li Pirsûse xwend, lê ji ber karên siyasî di sinifa duyem de min jî dibistanê avêtin. Ez cûm Agiriyê, di sala 1978’an de min lîse xilas kir. Paşê ketim imtîhanan û min li Antalya akademî qazanc kir, lê jiber ku akademî di destê faşistan de bû min nekaribû qeyda xwe çêkira.

***We universite nexwend…***

Na min nexwend. Min paşê li Edeneyê li kooperatif sanayii dest bi kar kir. Bi salan min di sirgûnê de li Edenê, Semsûr, Mêrdîn, Kızıltepe, Suruç kar kir. Min di 11 cihan de kar kir, hemû jiber nêrînên min ên siyasî min sirgûn dikirin. Di sala 2000’an de ez jî min dest bi karên siyasî kir. Di DEHAP’ê de min cîh girt. Di hilbijartinên 2005’an de ez bûm serokê DTP’ê yê bajarê Rihayê û di hilbijartinên 22 Tîrmehê de jî ez wek parlamenê Rihayê çûm Enqerê.

***Hûn li Rihayê biserê xwe ketin hilbijartinan?***

Ne, ez û hevalekî din, bi navê İbrahim Ayhan. Ew heval jî gelek dengan girt, lê rastî lîstikan hat û wek fermî nehat hilbijartin. Tenê ez li ser lîsteya DTP’ê ya serbixwe ketim parlamenê.

***Li parlamenê di navbera we de tu têkilî tunene? Dema hûn hevdû dibînin çi dibêjin?***

Em gelek caran rastê hevdu tên. Tên oda me, serdana me dikin. Di xwarinê de, di civînên giştî de, em silav didin hevdû û diaxifin jî. Lê ew ji me re dibêjin barê we pir giran e. Em nikarin bi we re bimeşin.

***Gelo hûn nabêjin ka hûn çima hatine vir?***

Belê em dibêjin, em herdu jî Kurd in, hûn jî parlamenin, em jî. Hûn hatine çi? Dibêjin ku em ji bo aboriyê, ji bo berjewendiyê xwe hatine. Hûn ji bo armancên siyasî yên giran hatine. Ev ne karê me ye. Dibêjin dibe ku dê û bavên me Kurd bin, lê em eleqeya karên siyasî nakin.

***Erdoğan dibêje 75 parlamenê me yên kurd hene. Tu dikarî bêjî gelo di nava wan de kijan ji yên din çêtir e?***

Ez nikarim bêjim kî çêtir e, jiber ku eger çêtir bûna wê cihê wan li wir bûya.

***Gelek caran Tirk bi ser we de tên. Wan kesa refleks nîşan nadin?***

Na tu refleks nişan nadin. Dema ku rastê van tiştan werin, naxwazin xwe nêzîk bikin, riya xwe diguherin. Ew ditirsin ku hêza bi ser me de tê bi ser wan de jî here. Em 21 kes in. Em ne şêr in, ne egît in. Lê em bi dengekî mezin çûne, gelê me li pişt me ye. Eger ku ev gel ne li pişta me buya wê nehiştina ku em di deriyê parlamenê de herin hundir.

***Hinek dibêjin ew karên ku Leyla Zana û hevalên xwe kirin, zêdetir balkêş bû. Parlamenterên kurd niha wek berê ne aktîf in… Hinek jî dibêjin ‘na, tiştê ku wan kir pêwîst bû wisa nekirana, hincet dan dewletê ku wan bigire, divê wek yên niha tevbigeriyana…’***

Ew hevalên me 16 sal berê hatin hilbijartin û çûn parlamenê. Ji wê roj heta îro sîstema Tirkiyeyê û ya dinyayê gelek guherî. Ew hevalên me li gor wê demê gelek bi serbilindî karên xwe kirin. Hinek ketin zindanê, hinek sirgûn bûn û hinek jî şehîd ketin. Lê îro pêvajo ne wek berê ye. Dema ku Leyla Zana li ser kursiye bi kurdî axifî wê ji parlemiyê xistin û avêtin zindane, 10 sal li wir ma. Niha em zêdetir bi kurdî diaxifin. Îro jî TRT 6 vekirin û bi zimanê biyanî weşan dkin.

***Hûn li parlamentoyê bi kurdî diaxifin?***

Belê em diaxifin. Lê ne di runiştinên giştî de. Mînak di cejnan de em kart amade dikin û bi kurdî jî dinivîsin, cejna wan wisa pîroz dikin. Lê ew vê yekê di nivîsên (ajenda) fermî de diyar nakin. Îro me ji kursiyê navêjin. Çima? Axaftinên me derbasî nivîsarên fermî nakin, lê dema ku derbas bikin jî wiha dinivîsin: ‘Ew bi zimanekî biyanî axifîn.’ Ji bo zimanê me qebûl nekin, dibêjin zimanê biyanî.

***Dema ku TZP dest bi hewldana axaftina kurdî kir, we jî biryar da ku di nava xwe de bi kurdî biaxifin. We çima ev biryar pêkneanî?***

Ev biryar wiha bû. Biryar bi tevahî nehat girtin, ew ne biryara partiyê bû.

***Li Parlamentoya Tirkiyeyê çend kes pêwîst e ji bo ku daxwaznameya fermî were kirin?***

Yek kes jî dibe. Ew paşê tê niqaşkirin. 5 kes dikarin bi hev re pêşniyaz bidin û 20 kes jî dikarin daxwaza guhertina zagonê bikin.

***Belê, he heta niha çima daxwaza zimanê kurdî nekiriye? Yekitiya Ewrûpa jî ev yek pêwîst dibîne ku dewlet perwerdeya ziman bike û hemû mesrefan bide. We çima tiştek wiha nexwest?***

Me xwest, min bi xwe ev kir. Ev demekî kurt, nêzîkî 10 mehan berê.

***We bersiv girt?***

Na, hîn negirt

***Niha li Tirkiyeyê destûrek heye ku înkara kurdan dike. We beriya hilbijartinan digot eger em herin Parlamentoyê emê destûr biguherînin. Niha hûn li parlamentoyê ne û tişteke neguherî. Leşker û dewlete kûr ev destûr diparêzin. Gelo derfet heye ku ev destûr were guherandin?***

Belê ev îmkan heye. Tirkiye niha ketiye riyeke nû. Pêvajoyeke nû destpêkiriye. Her kes ev dizane. Lê ew dixazin dereng tevbigerin, hêdî bimeşin. Difikirin ku çiqas dereng bixînin wê ewqas kara wan hebe. Lê divê ev destûr were guherandin û pirsgirêka kurd were çareserkirin. Lê hêzên gelê kurd çiqas xwestekên xwe xurt bikin, zêde bikin çareserî ewqas zû tê. An wê dewlet pirsgirêka kurd çareser bike, an jî Tirkiye dikeve felaketeke mezin.

***Tirkiye diçe Afxanistanê dewa aştiyê dike, li Filistînê di helwestên çareseriyê de dixwaze cih bigre. Tirkiye xwe dixwaze mezin nîşan bide. Gelo mezin e? Dikare bi vê mezinahiya xwe pirsgirêkan çareser bike u dinya jî piştgiriya wê bike?***

Ez karim bêjim, di nava mala mirov de pirsgirêk hebe û mirov çareser neke, nikare ti tişteke bike. Ev ne mezinahî ye. Bila pêşî nava xwe çareser bike, paşê here Afxanistan û Filistin. Tirkiye ne dewleteke mezin e. Erdê wê mezin e lê dewlet bêçare ye, deyndar e. Ji bo ku pirsgirêka kurd çareser nekiriye nêzikî 400 milyar dolar ketiye binî deyn. Malbateke deyndar çawa dikare alikariya derûdorê xwe bike.

***Bi tevlîbûna we ya parlamentoyê tu guhertin çêbûn? An parlamen, an partî piştî ku hun ketin parlamentoyê di fikr û helwestên wan de tu guhertin çênebûn?***

Hinek guherandin çêbûn bi rastî lê ne zede. Beriya ku em werin hilbijartin bi çavekî tûnd li me mêzedikirin. Lê paşê me guhdar kirin, temaşe kirin, dîtin ku armanca me ne tenê Kurd in, hemû mirovahî ye, hemu Tirkiye ye û hinek guheriyan. Niha hêdî hêdî bi mere diaxifin, nêzî me dibin, me guhdar dikin.

***DTP’yî carna tên û diçin Başûrê Kurdistanê, têkilîyan lidardixin, diaxifin. Hûn, wek parlamenê Rihayê Herêma Kurdistanê çawa dinirxînin?***

Başûrê Kurdistanê, Herêma Kurdistanê wek zarokek ku nû ji dayik buye. Divê mezin bibe, bideng be. Ev feydeya her çar perçeyan e. Lê divê Hikûmeta Herêmê jî xwe zêdetir nêzikî gel bike; ne li gor berjewendiyên malbatî û hizbî lê li gor berjewendiyên gel kar bike.

***Niha meseleya çekdanînê hatiye holê. Gelo ew dem hatiye? Hûn çi difikirin?***

Tu kes aşiqê çekan nîne, tu kes ji kêfê naçe ser çiyayan. Birêz Barzanî jî bi salan li ser çiya ma. Li bin her kevirekî xwîna şehîdan heye. Eger sertên çekdanînê derkevin ez bawer dikim wê pirsgirêk çareser bibe. Divê ew şert hebin. Endamên PKK’ê ev 30 sal in şerê çekdarî dikin. Niha çekên xwe deynin û werin tu dizanî wê çi bibe? Wê dewlet 30 sal jî wan bike zindanê.

***Niha hinek axaftin û hevdîtin hene li ser PKK’ê, çareseriyê û çekberdanê. Rojnamevan cûn hatin û herkes diaxife. Hûn van helwestan çawa dinirxînin?***

Armanc ne çareseri ye, tunekirin e. Niyeta wan a çareseriyê tune. Tu projeyên wan tuneye. Dibêjin ‘bila hêzên çekdar werin û bêjin em poşman in, em wegeriyan hatin.’ Ev ne niyeta çareseriyê ye. Îro PKK diçe, hêzeke din tê. Divê pirsgirêk were çareserkirin.

***Tê gotin ku di dewletê de hinek hêz, wek hikûmetê, MİT’ê dixwazin çareserî were…***

Na, ez bawer nakim. Niha dewlet ji çareseriyê re na amade ye. Her yek bi devekî diaxive, hinek nerm, hinek tûnd, lê hemû yek in. Yek dibêje ‘pirsgirêka kurd, yek dibêje pirsgirêka terorê, yekê din dibêje pirsgirêka Rojhilat.’

## Ku baraj tunebe em dikarin ji Rihayê 5 parlamenter derxin

***Li Rihayê kontenjana parlamenan 11 kes bû. Riha teqrîben ji sedî 90 kurd in. Çima tenê yek parlamenê kurd derket?***

Ev yek bi sîstema siyaseta Tirkiyeyê ve girêdaye. Em bi zor û zehmetiyan kar dikin. Gelek zor bû ku em xwe bigihîjin gelê xwe. Li pêşiya me gelek astengî hebûn. Me nikaribû siyaseta xwe bi gelê xwe bidin nasandin. Ez bawerim di pêşerojê de emê zêdetir pêşkevin.

***Hûn texmîn dikî ku di pêşerojê de wê çend parlamenê kurd û çend tirk derkevin?***

Di hilbijartinan da sîstem pir bi dijwarî bi ser me de tê. Li dijî me, gelê me komployan lidardixin. Li aliyekî din bi pere dixwazin dengên gel bidestbixin. Gel bi lîstikan dixapînin, ditirsînin. Li Tirkiyeyê hilbijartin bi awayên demokratîk çênabin. Eger bendava hilbijartinê ne sedî 10 bûya, me yê 3 parlamenter derxistina. Baraj tunebe jî emê ji 5’an zêdetir parlanemter derxînin.

***Ku baraj danekeve?***

Baraj wiha be jî, sîstema hilbijartinê demokratîk be, em dikarin herî kêm 3 kes li Rihayê bişînin parlamenê.

***Tê gotin her çend ku Abdullah Öcalan ji Ruhayê ye, Riha wisa ne zêde welatparêz e. Hûn di dibêjin?***

Rast e, wisa tê gotin. Lê ev jî heye, ji Rihayê gelek egîd û lehend derketine, Dîroka Rihayê dewlemend e, navenda peyxamberan e, navenda Kur- distanê ye. Siyaseta qirêj nahêle ku Riha bibe welatperêz. Eger Riha vê siyasetê têkbibe, kurdên Rihayê bipêşkevin wê karibe bibe navenda Kurdistanê. Ez bawerim ku di demekî kin de wê pêşbikeve. 5 sal berê ne wiha bû, 5 sal şûnda wê xurtir bibe.

## Serokê Amedsporê Emin Yılmaz:

# “Em dixwazin Amedsporê bikin markayeke mezin!”




*Piştî Diyarbakırsporê êdî li Amedê tîmeke futbolê ya din jî heye. Amedspora ku nû hat avakirin dixwaze bibe hêviya ciwanên kurd. Îsal bi futbolê û veloybolê destpêkirine, armanca wan di çend salan de beşdariya Superligê ye. Serokê Amedsporê Yılmaz Diyarbakisporê tîmeke dûrê gel dinirxîne û dibêje Amedspor bi gel re ketiye rê.*

**Amed (Rûdaw)** - Berî demekê li Amedê klûbeke sporê ya bi navê Amedspor hatibû avakirin. Piştî hin prosedûran hefteya borî navê “Amedspor” ji hêla walitiya Amedê ve bi fermî hat pejirandin. Rengên Amedsporê ji kesk û sor û zer pêk tê; amblem bi 17 stêrkan xemiliye ku her yek bajarokên Amedê temsîl dike û dara berûyê ji di nava amblemê de cihê xwe girtiye; roj ji ronahî û germahiyê vedibêje.

Serokê Amedsporê Emin Yılmaz di derbarê avakirin û hedefên Amedsporê de ji Rûdawê re axivî. Yılmaz da zanîn ku di serilêdana fermî de walitiya Amedê tu astengiyeke mezin dernexistine pêşiya wan. “Tiştên ku ji me xwestin me hazir kirin û teslîmî wan kir. Di derbarê amblema Amedsporê de hin pirs ji me kirin, me jî yek bi yek ji wa re rave kir. Me xwest em brûkrasiya dewletê bixin ezmûnekê, ka wê nêzîkahiyeke çawa bidin vê serilêdana me.”

Di derbarê fikra avakirina Amedsporê Emin Yılmaz dibêje ku ew û çend hevalên xwe yên mamoste û pisporê sporê li hev şêwirîne û xwestine ku klûbeke wisa ava bikin. “Di nav me de hevalên mamosteyên sporê hene. Lê me xwest ku em li gor fikir û rengên xwe Amedsporê ava bikin û bibin layiqê miletê xwe.”

Wek Yılmaz behs dike avakarên Amedsporê Dr. Yılmaz, Cengiz Dündar, Emin Yılmaz, Ekrem Aycan, Erdal Aydın, Ramazan Karataş in.

**Amedspor: zarokeka me ya biçûk**

Yılmaz dibêje ku bi avakirina tîmê di nava ciwanan de heyacanek dest pê kiriye. “Tu dibêjî qey em ê niha bikevin liga yekem. Hêviyeke mezin ji me dikin, piştgiriyê didin me. Her kes dixwaze ku kedek bide. Gelek his dikin ku zarokeka me ya biçûk çêbûye û difikirin ka em bi hev re çawa dikarin xwedî û mezin bikin…”

Em jê dipirsin ka gelo ferqa di navbera Diyarbakırspor û Amedsporê de çi ye; ji pirsa me geleki kêfxweş dibe û li me wiha vedigerîne: “Ferqa mezin wê ev be ku emê pişta xwe bidin gelê Amedê, bi dînamîkên navxweyî ve emê hereket bikin, emê bi hev re Amedsporê bigihînin serkeftinan. Lê Diyarbakırspor di naveroka xwe de ji gelê Amedê dûr ketiye, pişta xwe nade felsefeya gelê herêmê. Diyarbakırspor nasnameya xwe ya ku tîmeke herêmê ye winda kiriye. Amedspor wê di nava reng û çanda gel de mezin bibe û xwe bibîne…”

Di axaftina xwe de Yılmaz gotinê tîne ser xeyala Amedspor ya herî mezin. Yılmaz dibêje ku ew dixwazin


*Serokê Ameddporê Emin Yılmaz li ser bircên Amedê*

Amedsporê di dinyayê de bixin markayek mezin. “Çawa ku Atletico Bilbaoya baskiyan hebe, çawa ku Livarnoya Italyayê di dinyayê de markayek mezin be, em dixwazin Amedsporê jî bi serkeftin û piştgiriya gel bixin tişteke wisa. Dema em bibin wekî Barceloneya katalaniyan, hingê em ê jî bigihijin xeyalên xwe…”

Emin Yılmaz nêzîkayiya şaredaran a ji sporê re jî kêm dibîne û rexne dike. Yılmaz jî çapemeniya tirk jî aciz e ku bi çaveki neteweperest li Amedsporê şirove dikin, “Mixabin carna di çapemeniya tirk de di malperan de di derbarê me de şiroveyên ecêb û faşîst dertên. Rojekî qet serî li fikra me nadin. Bi hişeke yekfikrî, yekdengî mixabin sporê ji dilewitînin. Ev cara pêşîn e ku ez bi Rûdawê re dipeyvim. Em dizanin ku ew jî me jî û jî Dersimsporê jî aciz in. Lê dema ku hejmara klûbên wisa zêde bibin, helbet wê fikrên wan ên faşîst jî biguhere.”

**Li dibistan û kolanan ciwan tênê hilbijartin**

Dû re jî me re destnîşan dike ku ew her tiştî ji sifirê dest pê dikin: “Lê baweriya me bi hev tê ku em dikarin gelek tiştan bikin û biser jî bikevin. Emê îsal ji futbol û voleybolê dest pê bikin. Mamosteyên me yên sporê li tax û kolanan li dibistan û deverên din niha ciwanên jîr û jêhatî hildibijêrin. Dû re ew kes wê di bin banê Amedsporê de bicivin û perwerdeyê bistînin.”

Serokê Amedsporê Emin Yılmaz di dawiyê de bang li ciwanên kurd dike: “Her kesê ku sporeke alternatîf bixwaze, kesên ku bixwazin bi reng û çanda xwe ve mezin bibin divê bi her awayî bi fikir û moral bi rexne û pêşniyarên xwe ve ligel Amedsporê bin. Ciwanên jêhatî bila her dem li deriyê me bixin. Heta ku em piştgiriya bi milyonan kesî wernegirin wê dilê me rihet nebe. Jixwe heta ku xeyala bi milyon kurdî pêk neynin em ê nikaribin misyona xwe jî temam bikin.”

# Meleyên kurd bi dizî yariyên Real Madrid û Barcelona temaşe dikin


*Forvetê Barcelonayê Messi bi qelevan û parêzvanê Real Madridê re têdikose*

**ARÎ OSMAN**

**Rûdaw (Hewlêr)** – Ne tenê di nav ciwanan de fanatîkên tîmên spanî hene, di nav oldaran de jî fanatîkên herdu yaneyan tên dîtin. Her dema maçek tîma Barcelona ya spanî hebe, Mele Elî Şêx Sadiq 90 deqîqeyên maçê jî ber ekranê ranabe û televizyonê ji ser ekrana yariyê ranake. Mele Elî dibêje: “Fanatîkê tîma Barcelona me û ku têk diçe pir dilgiran dibim.”

Mamosteyên olê jî bili bicihanîna erkên xwe yên olî dest jî arezûyên dinyayê jî bernadin û wek her kesekî normal hinek xwiyî û arezûyên dinyayê jî pêk tînin, temaşekirina lîstikên futbolê yek jî vana ye ku meleyên Kurdistanê jê hez dikin. Lê mele dibêjin ku fanatîkbûna wan bo maçên futbolê bi taybetî ji Real û Barca hinekî bi dizî ye, jî ber li gor wan eger xelk bizanibe, wê rûbirûyê gotegot û şer bên. Mele Elî Şêx Sadiq ê aligirê Barcelona dibêje: “Eger ‘Barca’ di yariyekê de sernekeve, ez zêde dilgiran dibim. Ez aligirê Barcelona me, lê ez nahêlim xelk bizanibe. Ji ber eger xelk bizanibe, dibe ku bi awayekî din berê xwe bidin me.” Mele Elî tiştekî nebaş di temaşekirina maçên futbolê de nabîne û dibêje ku temaşekirina yariyên futbolê ne heram e: “Ola Îslamê qet ne li dijî werzîşê ye, lê xelkê dehif dide ku werzîşê bikin.”

Mele Dilşad Gelalî ku îmam û gotarxwênê mizgefteke Hewlêrê ye, fanatîkê yaneya Real Madrid e: “Aligirê Real im, bi baweriya min zêde normal e û berê xwe didim yariyan jî. Lê bi şertê ku dema yariyê nebe rêgir li pêşiya cibicîkirina erkên min ên olî.”

Derbarê temaşekirina yariyan jî aliyê meleyan ve, rojnamevanê werzîşî û pêşkêşkarê nûçeyên werzîşî li kenala Zagros TV, Erselan Evdilla dibêje: “Zêde normal e mele berê xwe bide yariya futbolê. Daxwazê jî wan dikin xelkê jî dehif bidin da ku berê xwe bidin yariyên futbolê.” Erselan wiha axaftina xwe qedand: “Lê bi rastî heta niha min nebihîstiye ku mele berê xwe didin yariyên futbolê.”

# Festîvala Qahîreyê ”Penaber”ê Zîrek xelat kir




**Qahîre (Rûdaw)** – Filmê “Penaberê Parîsê” (Paris d’exil) ya aktor û derhênerê kurd Ahmet Zirek, li Festîvala Filman ya Navnetewî ya Qahîreyê hat xelatkirin. Filmê yekem ê Zirek, di “beşê filmên dijîtal” ê pêşbirkeya Qahîreyê de xelata zivin (duwem) wergirt. Hunermendê kurd, xelata xwe şeva iniyê 20’ê mijdarê di merasîmeke li paytexta Misirê de wergirt. Li 33. festîvala navdar ya Rojhilata Navîn, filmê bi navê “The Rapture of Fe” ya Alvin B. Yapanê filîpînî xelata zêrîn wergirt. Ahmet Zirek, ji Bakurê Kurdistanê ye û penaberiya xwe ya zêdetirî 25 salan di vê filmê de vedibêje. Ew kurê xwe dişîne bajarê xwe, Culemêrgê, ku bapîrê xwe bibîne. Bi vê serêdanê bav û kur hevûdu nas dikin û dema berê tê bîra Zirek ka ew çawa sala 1980’an ji Kurdistanê derket û li Fransayê bû penaber. Zirek heta niha di filmên derhênerên navdar wek Yılmaz Güney, Costa Gavras, Sally Potter û Jean-Luc Goddard de û bi aktorên wek Îsabella Adjiani, Monica Belluci û Johnny Depp re lîstiye. Hunermendê kurd, piştî weşandina kitêba xwe ya bi navê “Bihizire ku...” yekemîn filma xwe “Penaberê Parîsê” çêkir û ew diyarî diya xwe û Güney kiriye. Filmê Zirek, berî niha jî, meha tirmehê, li Festîvala Navneteweyî ya Parîsê hatibû nîşandan.